TÊDAYÎ




TÎDSKRÎFT BERXWEDAN

Utges av

Kurdiska Demokratiska Riksförbundet

* * *

HS Offset

* * *

Konto No: 92 16 25 - 0

★

Berpirsîyar

MERWAN

★

BERXWEDAN

Kovara Kurdî

Xwesi: Federasyona Demokrat ya Komelên Kurd li Swêd

★

Navnişan - Adress

c/o Kurdiska Bockafet
David Bagares gat 12 nb
111 38 Stockholm
SWED


# ŞOREŞ A KURDÎSTAN

***Xwendevanên hêja!***

***Kadroyên şoreşger û gelê Kurdistan bo ronahîkirina rêya şoreşê gihîştin çekeka bi hêz.***

***Li gor belavokeka bi navê** ŞOREŞ A KURDÎSTAN **hatîye belavkirin bi vî navî kovareke ku pirtir li ser pirsgirêkê teorî û sîyasî bisekine, ew ê derê.***

***Kovara** ŞOREŞ A KURDÎSTAN **ku ew ê di vê mehê de dest bi jîyana xwe ya weşînî bike, em bawerin ku: wê li hember serberdayîya teorî û pratîk ya reformîstên burjuvayê biçûk; li hember çewtîyên şoreşgerên netewê serdest, ango di derheqê pirsgirêka netewî û şoreşê de; li hember polîtîka hêzên mijoka, bilindkirina zanistîya kadro û gelê me; ji bo bûyerên dinê û derdorê me bi awakî rastî û şoreşgerî wê xwe bixemilîne û di vê rêyê de wê çekeka bihêz be.***

***Em gellek kêfxweşin bi daxûyankirina derhatina** ŞOREŞ A KURDÎSTAN.*

BERXWEDAN

# ŞERR; DİBİSTANA BİLİND; YA KU GEL TÊ DE DERBAS DİBE YE

Hevalên Hêja;
Destnivisarên kovara **Berxwedan!**

Hejmara pêşin ji kovara **Berxwedan** bi dest min ket. Pirr dilşa bûm. Çimki; naveroka wê tiştên hêja anibû berbiçav. Hêvidarim ew ê kovara **Berxwedan** ne tenê li ser pirsgirêkên Kurdê derveyî welat raweste. Belê, li ser pirsgirêkên Kurd û şoreşa Kurdistan bi giranî raweste.

Ji ber ku baweriyên diji şoreşa Kurdistêne weşandinê, helbet ne tiştekî nû ye. Lê, kiraseki nûh kişandiye ser xwe, bi taybetî li Kurdistan'a(Tirkiyê) paş ku rejima faşist hate ser kar.

Bê guman çareserkirina meselê ne hêsan e. Û bi taybetî di gotarekê tenê de kifşkirin û daxûyandina vê rewşê ew ê kêm bê. Emê du baweriyên çewt yên diji şoreşê deynin berçav. Baweriya pêşî, berî hatina cunta faşist dihate belavkirin; a dudiyan paş ku hatina karbidestên faşist tê belavkirin. Lê, herdu bawerî dikevin yek rêçkê. Rêçka diji şoreşê. Mirov xweş dizanin ku xwedyê van herdû nêrînan zû bi zû û bihêsanî ji çewtîriyên xwe venakşin. Mîna mirov çewa nikaribe baweriya mişk bine ku şêr bi gelleki ji pisikê xwirttire, her wiha baweriya wan camêran wek a mişk nayê guhartin. Ev yek eşkeretir dibe dema mesela Cebha Niştimanî tê pêşniyarkirin, ger çiqas ji alî "teorî" xwedî lê derdikevi, lê ji aliyê pratîkê de ben û keleman datînin pêşiyê. Ji ber, Cebha Niştimanî bi xwe, tixûbên xebatê propegendî derbas dike, û her wiha hazirkirina şoreşê li dar dixe.

Ma ev herdû ditinên hanin bersiva rizgariya Kurdistan!!!

Ditina pêşî; ev e ku di pêvajoka dîrokê de bi pêşketina aborî hêdî-hêdî civat ji ber bi pêş ve diçe. Çimki; dîrok ber bi paş ve naçî. Û her wiha pirsgirêkên civat, welat û millet tê çareserkirin!! Li gor vê nêrînê, metodek ji xebata xwe ya siyasî re danin, ew ji ev bû: pêwîst e xebatek "demokratî" bê kirin, di rêya parlamento, kovar û komel û hwd. Yanî bi kurtî xebat bê kirin lê ji sinorê daxwaziya burjuvaziya serdest dernekeve. Û bi rayanîna wê bî. Ma ev rêya serxwebûna Kurdistan e? Pêşketin ji hêla aborî de çi bi xwe re tîne? Ma mercên serxwebûna siyasî, pêşveçûna aboriyê, yan mercên pêşveçûna aborî di xizmeta welat de serxwebûna siyasî ye?

Pêşketina aborî wek hatî ye zanin, pêşketina du faktora ye. Kar û sermaye. Pozberî û dijayetî li navbêna wan her û her heye. Û ku her aborî ber bi pêşve diçi, dijayetî gurtir û xurttir dibi; ta ku sermaye hilweşi. Lê, dibi hêzên şoreşger amadebin ji bo şoreşê. Çimki; sermaye bi giştî bê şoreşê nehatî ye hilweşandinê.

Ger li der barê metod bê gotinê, pirr metodên xebata siyasî hene. Lê bilindtirî metoda xebata çekdarî ye. Ji ber vê divê xebat; sinorê xebata komel û kovaran (ku bi raya dewletê derdikevin) derbas bike. Ji ber ku; bi metodên razibûna burjuvaziya Tirk be Kurdistan'ê rizgar nabe. Her weha, ji aliki din ve şertên pêşveçûna aborî, di xizmeta welat de serxwebûna siyasî ye (lê helbet ne tenê serxwebûna siyasî). Çimki; aboriya Kurdistan di xizmeta monopola de yi.

Ditina duduyan; herweki me li jor bi kurtî gotibû ku, ev ditin mîna a pêşiyê û dighên yek rê. Lê bi awaki ditir. Lê, çewa?

Dibêjin ku; divê şoreşek li Kurdistan li dar kevi. Çimki; bê şoreşê Kurdistan qet rizgar nabe. Lê, iro, mercên şoreşê li Kurdistan'ê peyda nabin(hêviya me heye ku ew ê keys bidest me kevi, di hejmarên pêş de û bi firehî vê yekê binivisînin). Yanî ê ku li wan guhdar biki, ji wan têdighê ku bi kêmanî kesên nuha dijîn ew ê şoreşa Kudistan û rizgariya wê nebînin. Paş dehên salan dibî ku şoreşek li Kurdistan'a Bakûr pêkevî. Ji ber vê jî, mesela şoreşê ji alî pratîkê berçav nagrin. Eşkere ye ku herdû nêrîn ne dûrî hevin. Yek şoreşê naxwazî. Û ê din ji şoreşê "dixwazî", lê pirr li dûr dixi. Bi qeysa ku tu kar iro ji ali pratik de neki, yanî herdû jî nakin. Lê, yek dibêje ez nakim. Yê ditir li dor wê dizivirî ji bo ku neke. Lê ki bixwaz, ki nexwazî; şoreş, roj bi roj nêziktir dibi û milletê Kurd xwe ranagrî li hêviya wan.

Mirovên amanceki deynin pêşiya xwe û metodên wê amancên pêkneynin ew: ne xwediyê wê amancê ne. Yanî hêzên ku serxwebûna Kurdistan'ê ji xwe re dibin, amanc û xwe ji bo şoreşê amade nekin ew hêzanan ne xwediyê serxwebûna Kurdistan in.

Gere em nazibin û ji bir nekin ku; ceng û şer dibistan in, gel tê re derbas dibin. Dibistanên pirr zor û dijwar in. Di proxrama vê dibistanê de heye ku dijmin ji carnan bi serkeve û di wê demê de ew ê bi sedan şoreşgeran li sêdaraxin, û hemû rengê zordariyê bikar bînin. Lê dibistaneke yên ku li dijî, derbasbûna wê ne, ji ber zor û dijwariyên wê, tenê ê bê mejînin. Çimki ev dibistana han zahmetkêşan fêrî şerr û cengê dike. Fêrî şoreşeke bi serketî dike. Hêviya me ya mezin ev e ku herkesê şoreşger û welatperwer ji nerastiyê vekşin û van çewtiyan ji gel dûr bihêlin. Ev çewtî biminin rût û tazî wekî şevşevokê.

Bi bendekî helbesta seydayê mezin Cigerxwin vê nivisandina xwe dawî pê bînim. Pirr sipas li gel silavên germ bo destnivisên kovara **Berxwedan** û hemû xwendevanên wê.

*«Ey xortên civanmêr, bese bêfêde ye ev rev destê xwe bidin hev Ronahî li pey tarî ye, tim roje li pey şev em nayêne kuştin»*

**Hevalê we CENAN**

# ENDAMÊ KOMÎTA MERKEZÎ MEHMET KARASUNGUR Û ŞERVANÊ PKK ÎBRAHÎM BÎLGÎN ŞEHÎD KETİN



**Mehmet KARASUNGUR**



**İbrahim BİLGİN**

Ji sedemên taybetên derva û hundir berberi û dijberiya bê fêde ku zerarê digihine tekoşina gel ji bo ku bêyi rawestandin, têkili û yekitiya hêzên pêşverû û welathiz avabibe gelê Kurdistan divê oxirê de du lawên xwe yê mêrxas wundakir.

Li gor agahdariyê gihane rojnama me roja 2 ê Gulan'ê 1983a ji sazkarê PKK û endamê KM Mehmet KARASUNGUR û şervanê Partiyê İbrahim BİLGİN li hêla çiyayê Kandilê bi berikên hêza Yekiti Niştimani Kurdistan şehîd ketine.

Bi alemê tê zanin ku ji mehan ve berberi û şerê navbera cebha El Vetan Demokrati Iraq û Yekiti Niştimani Kurdistan didome û dibe sebebê kuştina gellek şoreşger û welathizên Kurdistan

Ji bo têkili û ditina piştgirtiyeka rast bi van hêlla tê bigihine ji berê ve di navbera hêzên welathiz û pêşverû û hêzên demokrat û şoreşger da Mehmet KARASUNGUR xebatan pêkanibû, kesên van hêla dibû û di vi ali de xebatên bingehi pêkani bû.

Ji bo vê berberiyê rawestinin, hêzên hember hev çek bikartinin li hemberê diktatoriya Seddamçekên xwe biteqinin Mehmet KARASUNGUR û İbrahim BİLGİN xebatan pêkdianin. Bi vê amancê dema li karargaha PKÎ ku civin ji ali hêzên çekdarê YNK ve têgiştin diberberiya bûyerê de şehid dikevin. Disa di vê sergirtinê de ji endamên KM ya PKİ û 40 endam û şervanên vê partiyê ji têne kuştin.

## EV BERBERÎ KÊRÎ KÎ TÊN

Bi tekoşina hêzên şoreşger û pêşverûyên Rojhelata-Navin, hêzê İraq û Kurdistan'a Başûr, û ji ber şerê İran'ê cendirmeyê emperyalizm, diktatoriya Seddam hatiye ber ketinê.

Hoyên hundur û derva ji bo binxistina sazûmana Seddam êrinine. Lê ji ber kêrnehatina hêzên hember, pêknehatina yekitiya çarenin, ji xeyni van ew berberi şerên tesir li hêzên hêlê, Kurdistan û İraq'ê dikin, bêberpirsiyariya mezin, berberiya hundir diktatoriya Seddam dijine.

Ki bi çi awayi, li ser çi pergali nêzdibe û dibe sefgirtiyê bûyerê, ji van pêkhatinan, ji tewrê jiyandomandina diktatoriya Seddam berpirsiyarin û li pêş dirokê sûcên giran pêktinin.

## BERPİRSÎYARÎYEKA GİRAN Lİ MİLÊ HÊLÊN ŞOREŞGER Û WELATHİZ E

Hêzên dilxwazên yekitiya siyasi û netewa Kurdistan in dibi ku hember tewra pêkaninan hêlitî, eşriri hwd. ku yekitiya nav me dipêjrinin, dijminahi û benditi diafirinin pêwiste ku tekoşin bikin, û li sefên daxwaza salan sefê yekiti û hevkariya gel cih bigrin.

Di vê oxirê de dema tekoşin domandine Mehmet KARASUNGUR û İbrahim BİLGİN û partiya wa PKK rêya me ronahi dike. Tu hêz û xebat nikare yekiti û tekoşina gelê Kurdistan rawestine.

# BİDARVEXİSTİNA 35 ŞERVAN Û RÊBERÊN PKK EW Ê BİBE BİNXİSTİNA WÊ YA KURDİSTAN'Ê

Dawa Diyarbekir li Örf-i İdara Diyarbekir, dadgeha leşkeri, di 13 Nisan'ê 1981 de destpê kir, biryar di 25 ê Gulan'ê 1983an de daxûyan bû. Derheq 35 şervanande biryarê bidarvexistinê, derheq 28an de muebet hatiye sitendin. Ji ber emr'ê wan piçûke derheq 10an de biryar guhurri û 24 sal dane van şervanan. Derheq 33 girtiyên şoreşger de nevbera 3-24 salan de ceza dane 178 kes ji hatiye berdanê.

Bi biryarên bidarvexistina 7 şervanên dawa Birecik'ê roja 3 Gulan'ê hejmara biryarên bidarvexistina gihiştiye 42ya.

Piştî dem-dagirtina dadigehê ku biryar daxûyan bû, şervanên şoreşê bi yek dest û yek dengi şiarên şoreşgeri, hember dadgehê tinin zman û daxûyandikin ku dadgehan qolonyalist ji bo biryarsitendinê nasnakin. Li hember vi tewrê berxwedan û tevgera bilind hêza qolonyalist êriş dike ser şervanan, gellek şervan birin dibin. Şervanan dadigrin erebên pola û ji dadgehê dûrdixinin. Dûra tu hay û agahdari ji van şervanan daxûyan nabe. Lê, li gor daxûyanbûnên hêla girtixanê ji ber berxwedanê didominin, zilm û işkencên giran li ser van şervanan pêkdibin. Dîsa li gor agahdariyê maliyên girtiya dibin zerpên giran dane.



Ev zilm û zerp li ser gel tê meşandin û daxûyanên dema êrişa Kurdistan'a Başur pêk hati eşkere xûyan dide ku hêza qolonyalist di tirseka giran daye. Nexasim bi êrişa rojeve eşkere ye ku hêza qolonyalist dixwaze bi hêlên din ve bal bide kişandin û tesira biryaran ji ser gel û navnetewa betal bike. Lê, pêkhatinên rewşê vê amancê pêkaninên hêza qolonyalist bervaji guhartiye, bi girani rewşa Kurdistan û hêza PKK bal kişandiye.

Gellek zelal e, êriş ew ê hemberi û tekoşina gel geştir bike. Ew dema hember darvexistinan rewşa bêdengi zû ve hatiye bihurandin, bi xemla hemdemi û rêberiya rêxistina berxwedanê gelê Kurdistan sebebên wundakirinên mezin be ji daye nişandan ku ew ê tekoşina serxwebûna Kurdistan bê binxistin bê domandinê.




Roja 24 ê Gulan'ê 1983 biryarên darvexistinê derheq van şervanan de hatiye dayinê.

Riza ALTUN, Şukru GULMUŞ, Muzaffer AYATA, Celalettin DELİBAŞ, Musatafa KARASU, Bedrettin KAVAK, Mehmet TAKİR, Abdulsemet TEKTAŞ, Selahattin ŞİMŞEK, Celal BAYMİŞ, Hamit BALDEMİR, Hidir AKBALİK, Mehmet TANBOGA, Mehmet CANYÜCE, Mehmet Emin KESKİN, Ali YENER, Kemal AKTAŞ, Abuzer DEHŞET, İrfan GULER, Suleyman GUNEYLİ, Ali KİLİÇ, Ramazan ÖDEMİŞ, Salih OGAÇ, Zulfikar TAK, Halil UCUT, Ali YAVERKAYA, Feyzi YETKİN, Abbas YOKUŞ, M. Fahri ÇİFTKUŞ, İzzet BAYKAL, Yilmaz UZUN, Alaattin AKTAŞ, M. Emin GÖKDEMİR, Cemal ARAT, Cuma KUYUKAN.

Şervanên derheq wan de biryarê muebet hatiye sitendin ji ev in:
Selahattin EFE, Resul YAŞAR, Eyup ACAR, Harun BİÇAK, Abdulkadir ATİL, Mehmet ÇAT, Osman GULTEKÇE, Ömer Nihat KAYA, Hasan Huseyin KARAKUŞ, Ahmet KİLİÇ, Abdurrahman SEVGAT, Emin YAVUZ, Hamza YAVAŞ, Fettah YİGİT, Ahmet KOSANLİOGLU, İlhami ADİYAMAN, Aptullah KANAT, Mehmet GİRGİN.

# DERHEQ MAHKEMÊN PKK DE BİRYAR DAN

## MAHKEMÊN BÎRECÎK

3 Gulan'ê 1983an de mahkema refa Birecik ku li Diyarbekir dihate domandinê gihişte dawiyê.

Ji nav 61 kesan derheq 7 şervanên cengê de biryarên bidarvexistinê, ji bo şervaneki biryarê muebbetê hatiye danê. 28 kes têne berdan, derheq 20 şoreşgeri de di navber pênç û sê salan ceza tê xwestinê.

Şoreşgerên derheq wan de biryarên darvexistinê hatiye sitendin ev in: Kemal Tekgöz, Salih Segiz, Musa Aslan, Mehmet Yalçin, Ahmet Ögretmen, Hasan Çepık û Mustafa Çepık. Derheqê Tahır Ertürk de muebbet dane.

## BİRYARÊN DERHEQ MAHKEMA NAVÇEHÎ DE WÊ VÊ HEFTÊ DAXÛYAN DİBE

● *Bidarvexistina 99 şervanên girti tê xwestin!*

Ji destpêka roja 13 ê Nisan'ê 1981 ve ku li mahkema eskeriya örf-i idarê şoreşgeran de li gor benda 125an biryarên bidarvesixtinê, ji bo 285a di navbera muebbet û hepsa 3 sal ceza tê xwestin. 136 kesan re berat tê xwestinê.

## DÎ MAHKEMA ENTAB'Ê DE PÊVAJOYA PİRSÊ XELAS BÛ YE!

Derheq 7 kesan de biryarên bidarvexistinê tê xwestin. Li örf-i idara qolordiya 7. Mahkema eskeriya Entab'ê dema pirsê gihiştiye dawikê. Ji 550 girtiyan derheqê heft kesan de di navbera 4 û 20 salan ceza tê xwestinê. Piştî rûniştina mahkema 11.4.1983a li gohr daxûyana bûye, mahkeme derheq kesên bêsebeb ku girtibûne biryarê berata 67 kesa dide û derheq 2 şoreşgeran de biryarê girtinê didin. Ku mahkeme li qolordiya 6. komitaniya örf-i idarê didomiya refa Edenê tevi vê dikin pê de daxûyan bû ku ew ê li Îçel û Hetay'ê mahkeman bidominin.

Roja 11.4.1983an de derheq van kesan de biryarê beratê hate daninê. Hatice Kaya, Hatice Akteke, Huseyin Sarikaya, Mehmet Yaşar Ateş, Akdaş, Kureyiş Yorulmaz, Kazim Gulmez, Mehmet Nuri İlhan, Mehmet Çabük, Ali Kuşoglu, Ali Kale, Abdullah Hoşgören, Ahmet Kök, Döne Melamin, Fatma Esanir, Fatih Ruştu Zorluyildirir, Hayri Çelik, Huseyin Poyraz, Hasan Özcan, Kazim Atalay, Mahmut Yildirim, Mehmet Gülnay, Mehmet Şentürk, Muhittin Ateş, Ökkeş Şimşek, Ömer Kaya, Salman Nacakgedigi, Sait Emir, Vakkas Akboga, Aysel Dogan, Cindi Aslan, Döne Yildirim, Döne Gölgeli, Fatma Carman, Gulşen Demirdelen, Guluzar Uzundere, Hayriye Konar, M. Hanifi Bayindir, Hösne Contay, İnsaf Çetinel, Kazim Agaaslan, Kadir Çam, Mehmet Nuri Taşkin, Mehmet Akboga, Mehmet Uludag, Tagip Kordeve, Şehnaz Azizoglu, Şiho Muslum Ata, Yakup Beydili, Yusuf Turunç, Zöhre Ovayolu, Gulşen Övezoglu, Ahmet Karabiyik, Bekir Bozkurt, Huseyin Oguzcan, Mehmet Ali, Osman Çinar, Ömer Nacar, Salih Uçar, Tahir Sapan, İmam Balaban, Osman Ateş, Naci Hacideniz, Musa Sabuncu, Muslum Gül, Munire Turan, Ali Özkan, Cafer Aykanat, Eşref İnnat, Mehmet Emre,



didome biryarê derheq mahkema navçeyi de wê di vê heftê de daxûyan bibe.

Ji 570 şervanên PKK derheq 99

Zeliha Umurcan, Zöhre Umur, Ahmet Degirmentaş, Ali Sumbul, Ali Can, Ali Taner, Celal Guzel, Haşim Guzel, İsmail Sezerkan, Kemal Talat Özcan, İzettin Fazlinar, Ahmet Uçar, Cennez Uzundere, Mehmet Yetmez, Haci Ateş.

# XELEKÊN QETLÎAMA Lİ ZİNDANÊN DÎYARBEKİR

Ji bo girtiyên PKK ku di bin işkence û zerpên dijwar de radiwestinin biryarên bidarvexistina wan ji mêj ve destpê bûye. Ji sedemên vê yekê, biryarên bidarvexistinê ku hatine daxûyankirinê ji bo kifşkirina hejmarên bidarvexistinan ev daxûyan rastiyê nade eşkerekirin. Lê, ji netîca pêkaninên hovîtî, nemiroviya qolonyalista faşist, çend kes hatî kuştin bi hejmarek zelal ne kifşe. Lê, rastiyek heye ku girtiyên PKK, esirên şer li ber qirkirina ne. Me dem-bidem qirkirin û kuştinên li ser agahdarbûna xwe daxûyan kir. Ev rojên li ser hev biryarên darvexistinan tên sitendin û li berçave ku ew ê pêkaninên van nêze, em ê navên kuştî û yên derheq wan de biryar hatiye sitendinê ku bidarvexin li vê rêz bikin.

**Navê şervanên şoreşê ku di işkence û qirkirinan de derheq wan'an biryarê kuştinê pêkhatiye ev in;**

| | | |
|---|---|---|
| Aytekin TUGLUK | Eleziz | 14 Êlûn 1979 |
| Sait ŞÎMŞEK | Entab | 1980 |
| İbrahim KURT | Edene | 1980 |
| Ali EREK | Diyarbekir | Tebax 1980 |
| Remzi YALVAÇ | Diyarbekir | 1981 |
| Sabri KANDEMÎR | Diyarbekir | 1981 |
| Abdurrahman ÇEÇEN | Diyarbekir | 1981 |
| Ahmet DEMÎR | Diyarbekir | 1981 |
| Vakkas DOGRU | Araban | 1982 |
| Hasan (Hüseyin) AKAR | Adana | 1982 |
| İbrahim PAYDAŞ | Diyarbekir | 1982 |
| Şaban | Diyarbekir | 1982 |
| Asker DEMÎR | Ankara | 1982 |
| Mazlum DOGAN (Endamê KM ya PKK) | Diyarbekir | 21 Adar 1982 |
| Ferhat KURTAY | Diyarbekir | 22 Adar 1982 |
| Eşref ANYAK | Diyarbekir | 22 Adar 1982 |
| Kemal PÎR (Endamê KM ya PKK) | Diyarbekir | 8 Elûn 1982 |
| M. Hayri DURMUŞ (Endamê KM ya PKK) | Diyarbekir | 8 Êlûn 1982 |
| Akif YILMAZ | Diyarbekir | 8 Êlûn 1982 |

Yên derheq de ji berê ve biryar hatî sitendinê.

| | |
|---|---|
| Mehmet KARA | Nisan 1982 |
| Dursun Ali KUÇUK | 1 Çile 1982 |
| Mehmet SAVAŞ | 1 Çile 1982 (biryarê muebet) |

**Di dawayên netîcê wan 3 Gulan 1983 û 25 Gulan 1983a daxûyan bû yên Bîrecîk û Dîyarbekir'ê ku derheq wan de biryarên muebet û bidarvexistinê tê xwestin;**

## DAWAYA BÎRECÎK

| MUEBBET | BİDARVEXİSTİN |
|---|---|
| Tahir ERTÜRK | Kemal TEKSÖZ |
| | Salih SEGİZ |
| | Musa ASLAN |
| | Mehmet YALÇİN |
| | Ahmet ÖGRETMEN |
| | Hasan ÇEPİK |
| | Mustafa ÇEPİK |

## DAWAYA DÎYARBEKİR

| MUEBET | BİDARVEXİSTİN |
|---|---|
| Selahattin EFE | Riza ALTUN |
| Resul YAŞAR | Şukru GULMUŞ |
| Eyup ACAR | Muzaffer AYATA |
| Harun BİÇAK | Celalettin DELİBAŞ |
| Aptulkadir ATİL | Musatafa KARASU |
| Mehmet ÇAT | Bedrettin KAVAK |
| Osman GULTEKÇE | Mehmet TAKİR |
| Ömer Nihat KAYA | Abdulsemet TEKTAŞ |
| Hasan Huseyin KARAKUŞ | Selahattin ŞİMŞEK |
| Ahmet KİLİÇ | Celal BAYMİŞ |
| Abdurrahman SEVGAT | Hamit BALDEMÎR |
| Emin YAVUZ | Hidir AKBALİK |
| Hamza YAVAŞ | Mehmet TANBOGA |
| Fettah YİGİT | Mehmet CANYÜCE |
| Ahmet KOSANLİOGLU | Mehmet Emin KESKİN |
| İlhami ADİYAMAN | Ali YENER |
| Aptullah KANAT | Kemal AKTAŞ |
| Mehmet GÎRGÎN | Abuzer DEHŞET |
| | İrfan GULER |
| | Suleyman GUNEYLİ |
| | Ali KİLİÇ |
| | Ramazan ÖDEMİŞ |
| | Salih OGAÇ |
| | Zulfikar TAK |
| | Halil UCUT |
| | Ali YAVERKAYA |
| | Feyzi YETKİN |
| | Abbas YOKUŞ |
| | M. Fahri ÇİFTKUŞ |
| | İzzet BAYKAL |
| | Yilmaz UZUN |
| | Alaattin AKTAŞ |
| | M. Emin GÖKDEMİR |
| | Cemal ARAT |
| | Cuma KUYUKAN |

Di dawayên PKK de ku ji 5.000an zêdetir welathiz û şoreşger têne mahkemekirin bi hemû pergalên girtinê nêzik 600î biryarên darvexistinê têyi xwestin. Ku dawa refa navçe li Diyarbekir pêkdihat û didomiya vê dawê bi gellek refi ji hev parvekirine

**Ev dawayên refê veqetandi ev in;**

a- PKK dawa Refa Navçe.
b- Wêranşehir.
c- Halfeti.
d- Ûrfa-Navçe
e- Ûrfa-Birecik.
f- Ûrfa-pêve.
g- Ceylanpinar-Bozova.
h- Batman-pêve.
j- Mêrdin-pêve.
k- Eleziz (Diyarbekir).
l- Dawayên Edenê, Hatay, Mareş, Entab û Adiyaman ku di qolordiya 6. komandaniya örf-i idarê de tên ditin.
m- Dawayên Erzincan, Erzerom, Qers û dawayê pêve di qolordiya 9a komandaniya örf-i idarê de tên ditin.
n- Dawayên Eleziz û dawayên pêve di qolordiya 8a komandaniya örf-i idarê de tên ditin.

# DAWA PKK; DAWA SERXWEBÛN Û AZADÎYÊ YE

Mahkema 572 şervanên cengê, tekoşerên PKK di mahkema leşkeriya Diyarbekir de bi biryarên darvexistina 35 şoreşger û muebeta 19 tekoşeran gihişte "dawikê"! Netica mahkema ku ev ji du salan zêdetire ku tê domandinê, mane û giraniya vê neticê bi hemû taybetan ve li holê ye.

Hemû mahkemên PKK û nexasim mahkema-Navçe li hember qolonyalista bû navça şervanan û dozparêzî û tekoşina serxwebûnê. Taybetên mahkema daxûyan kirine ku; di nav şerê rizgariya netewa û domandina şerê serxwebûna gel û welat de, dijmin çiqas har û êrişbaz be, çiqas bi hêz û dijwar be, di vî şerê dijwar de, gelê şervan û biryarvanê tekoşinê hember dijmin bin nakeve. Mahkemên PKK bûne nişana binneketina vî şerî û bûne sembola serfiraziya gelê Kurdistan. Bi van hemû taybetên xwe mahkeme gihiştine qeysa ku hêzên qolonyalist, berdevkê wê, pirskirinên ji xwesipariyê. Bi hebûn û rêberiya idioloji û politika rêxistina karkera, parazvanên vê nêrinê rêya serxwebûn û azadiyê firehkirine û rêya serfiraziyê ji niha ve daxûyan kirine.

Ev dawayên diroki ne. Lewra ji qurna salan û nexasim 60 sale ku tunekirina netewa qolonyalistan daye pêşiya xwe di van mahkeman de qolonyalista Tirk û hovitî û zilma burjuvaziyê xwinxwar hatiye daxûyankirin û pirsa van yekan jê bû ye. Ger sedsalan bi dome ji ev mahkeme bûne nişana ew ê gelê Kurdistan'ê di rêya serxwebûnê de vî nirê nemirovî hilweşine. Û mahkeme ji vê amancê re bûne pirekî.

Ev dawayên bi heq'in mina şervanî û biryarvaniya hemû gelên azadîxwaz û parasvanên serxwebûnê; gelê Kurdistan ji, daxwaz û hêviyê xwe ya serxwebûn û azadiyê di van mahkeman de geştir kiriye. Û hêrs û hemberiya dij qolonyalistan berçav xistiye.

Ev dawa, bin nakevin; lewra ev şerê li ser mafî pêk tê, tekoşina ku hatina gel daxûyan dike, di hemû pêvajoyên dîrokêde kifşbûye ku herdem serfirazbûne. Ku hêzên serdest bi zilm û zerpê cihnabinin li hember tekoşinên gelan ji binketinê nefilitine. Ji bo ji bin nirê qolonyalisti derbikeve gelê me yê şervan di vî şerê xwedî maf de ji niha ve bin nakevî û serfiraziya xwe dide nişandanê.

Dawa ya PKK ku bi maf, binneketî û dîrokiye dawa ya gelê me, dawa ya serxwebûn û azadiya gelê Kurdisan e. Ji sedemên van yekan ev dawa ne tenê di derdorên mahkeman de û ne bi mahkeman gihiştiye dawikê.

## DAWA PKK DAWA SERXWEBÛN Û AZADÎYA GELÊ KURDİSTAN E!

Dawa PKK hê ji afirandina Tekoşina Serxwebûna Kurdistan ve destpê bûye. Bi avakirina nirê qolonyalist burjuvaziyê Tirk li ser gel û welatê Kurdistan hebûna xwe avakiriye û tunekirina netewa Kurd amanca yekemin daye pêşiya xwe. Bi hatina salên 1970 ve di vî alî de gellek serfiraziyan pêkanî bû. Lê, ezm û ruhê ku têgihiştiye vê yekê bû bi qetliam û nefî û zerpê ji holê rakiriye xistiye gorê. Bi vê gumana pirsgirêka Kurdistan binxistiye li ser Kurdistanê hesp dilistikanda. Bi rastî ev rewş bi wî awayî ji lê ray dihate kirinê. Ku; hebûna gelê Kurd di nav cihanê de jibîr ve hatibû kirinê. Ev rewşa li holê û ku burjuvaziyê Tirk li cihanê ji dida xebitandinê bi rastî pêvajoya ber tunebûnê bû.

Ji alî emperyalizmê ve ev dawaya ku hatibû girtin, bi gumana ketiye nav tarîtiya dîrokê û hew jê derdikeve. Mina burjuvaziyê emperyalizm ji pirsgirêkek wiha naznedikira. Ji alî gelê me va ev pêvajoya dihate jiyandin bi herawahî neerînî bû. Çînên serdest ji berê ve vê rewşa xedar hebandibûn. Heta wan ji burjuvaziyê Tirk dijwartir vê rewşê kardianin û li ser vê rewşê jiyandidomandin. Ev ronakbirên dozparêzên gel di rewşek hewqas neerînî de bûn ku ne hêza hemberiya vê rewşê bikemilînin, ew di derdorên xiza dijmin de tevger girêdidan.

Lê ev pirsgirêka alî emperyalizmê û burjuvaziyê Tirk ve hatiye hildanê helbet ev ji alî gelê me ve ne wilo bû. Kedkarên gelê me di nav ev tariya vegirtî de hebûna gelî dijiyan û jiyana gelî didomandin. Lê ew ê dengdana vê rastiyê çewa û bi çi bigihiya cihanê. Û ew ê çewa bi hata bilindkirinê. Ku bi hemû cihan û ta ji gellek aliyan bi gelê me ji dabûn jibirkirinê ew ê ev pirsgirêk çewa derbiketiya meydanê.

Tenê dozdarê vê pirsgirêkê him ji alî doza netewî û him ji alî gihandina pêvajo û hemdemê tenê çina karkerên Kurdistan'ê bû. Bi sala 1970 bi bingehgirtina idioloji amanca karkeran li ser bihgenê karkerên Kurdistan'ê refek komunist bi amanca afirandin û derxistina vê pirsgirêkê şer destpêk anîbûn. Hê ji destpêkirina vî şerî, bi gavavêtinên destpêkî ve hebûn û doza vê pirsgirêkê ku ew ê di rewşa ronahî de bigihije serfiraziyê rûpelên nûjen vekirin. Û binneketina vê pirsgirêkê daxûyan kirin. Rastiya ku iro li ser hebûn û mahkemên PKK eşkere ne bi rastî ji Tekoşina Serxwebûn û Azadiya gelê Kurdistan bi tekoşin, hebûn û rêberiya PKK zelal bûbû. Û ev hê ji wan salan ve destpê bûbû.

## EMPERYALÎST Û QOLONYALÎSTÊ TİRK Bİ DERKETİNA DAWÊ HEYSÎ Û DİJWARBÛN

Ku dawê dabûn jibirkirin û gumana wan da tunebûbû, dawa û pirsgirêk bi hêz sitendina hemdemê bi destê karkerên Kurdistan ku derkete meydanê emperyalist û hêza qolonyalist şaş û heyrî man. Bi rastî ev hemû cihan li vê şaşbû. Bi gumana vê pirsgirêkê hildabûye pêvajoya ku pirsgirêk bi pergalên kemilandî hember hêza qolonyalist afirî di vê rewşê dijmin di nav şikên giran de ma û êşên giran kişand û li hember vê dozê tewrên xwe yê dîrokî dîsa nişan da. Hê dema çirisk vêketibû ku li hemû derdoran ronahî nedabû bi êrişa ew ê kanîya çiriskê bitemirine Hogir HAKÎ KARER qetilkir. Bi vî awayî biryar ji destpêkî ve li ser tunekirinê hatibû danê.

Hember biryarên tunekirina tekoşin û tevgera rizgariya netewa Kurd, biryarê refa rêber û biryarê gelê me zelal û qatî bû. Li hember işkence, zerp û qetliam û amanca tunekirina biryarê gelê me bû di nav vê rewşa xedar de bilind kirin û domandina berxwedan û tekoşinê. Ger piştî 12 ê

Êlûn'ê, ger berya 12 ê Êlûn'ê hember hemû êrîş û derbên dijwar domandin û bilindkirina tekoşîna netewî bû nîşana vê yekê. Dihat zanîn, dijmin ji bo hilandina tekoşînê hêza xwe û hemû destikên xwe bikar bîne. Ku ji destpêkê ve tevgerên şerî bikar anî. Tenê tetbiqata bi kincê pêşmergan li hêla Hakkarî pêkanîn,dibe nîşana vê yekê. Dîsa zerp û êrîşên ax'a û êsiran, kuştinên kuçe û meydana dibine nîşana vê yekê.

Hêzên qolonyalîst hember tekoşîna netewî, û bi kuştin û bi işkencan û zerp'ên tazî di amanca xwe da serfiraz nebû pêde, li hember tekoşîna şoreşgerî şer daxûyan kir. Lewra, di alî pûçkirin û tunekirina ezm û biryarvanîya berxwedan û serxwebûnê de dijmin bêçare ma. Ji 1980 biserkarkirina generalan ev şerê eşkere tê domandinê. Pişt sala 1980, girtin, û bombekirina erd û çiyana, qetliam û îşkencê hepisxana, zeftgirêdana ser gunda pêk anî... hemû perçene ji vî şerî. Hêzên qolonyalîst ji alîkî ve tunekirina tekoşîna netewî didominin, ji hêla di ve ta kilera gelê me zenginî û ked'a gel daduqurtînin û dest davê hemû destikên jiyandomandinê. Di bin nirê qolonyalîstî de bi zerp û zilmê gel dikin ku bimelisînin ji rewş û qetlîamên heps û ji xwe qeysa zerp û pêkanînên qolonyalîstan daxûyan dibe. Lewra; girtî agirên serxwebûn û berxwedanê geş dikirin û bûbûn rêber ji tekoşîna gel re.

## BÎRYARÊ BERXWEDANÊ BÎ XWÎNA ESÎRÊN ŞER MOR BÛ!

Bi operasyonên ji bihara 1979an û nexasim ku di sala 1980yî de dijwartir domandin gellek şoreşger û welathîzan dagirtin girtîxanan. Tenê ji sedemê Kurdistanî ne, gundî û karkeran dagirtin qampa. Û li dibîstanan, nexweşxanan û derên dewletê bi rojan îşkencên giran pêkanîn. Ji ber girtîxane têr nehatine, işkencê û hela zerpê gihandin derdorên gundan.

Di vê pêvajoya girseyên gelê Kurdistan ku ji bîr û doza xwe ber bide, zerp û zilmê dijwar pêkdianîn. Lê cihê vê zerp û zilmê bi hemû taybetên xwe li girtîxanan didomîya. Hêzên qolonyalîst mina hêlên di,bi dijwarî êrîş û dijberîyên xwe li ser van refên ku doza gelê Kurdistan daxûyan kirine pêkanîn. Hemû nemirovî û hovberîyên xwe li ser vê hêlê domandin. Ger bi kuştin, ger ji bi pêkanînên nemirovî dawî ku dev ji bîr û baweriyên xwe berbidin, hêzên qolonyalîst ji xeyn van pêkanînan bi hemû rengên nemirovî lidarxist,ji bo,tevgera berxwedana sazgarîya Kurdistan pêş nekeve. Ji sedemên vê amanca hov û nemirovî destpêkî ve ev yek pêşber girtîyan bû; an ew ê hember dijmin nermok û xwesiparbin, nirê qolonyalîstî bihebinin, an ji ew ê bêne tunekirin. Di vê rewşa dijwar û pêşberîya du rêçan de şoreşgeran rêya jiyanê da ber xwe. Lê, ne ew jiyan û rêya jiyana ku li ser xwesiparî û xwedûrkirina bîr û baweriyê û ne ya jiyana arizî pêk tê, wan biryara jiyandomandinê li ser bingehê tekoşîna serxwebûnê û ji bo cangorîya tekoşînê mirina xwe dane berçav. Ew jiyanek di hoyên dijwar, rewşa girtîxanan de dijmin bindixine dan pêş xwe. Bi zanebûna ku xwesiparî û melisandin mirineka rûreş û nemirovî ye esirên şer bi tewrên biyarî bi xwîna xwe **"Berxwedan Jiyan e"** nivîsandin.

Bi vî awayî biryarê doza PKK di nav şerê girtîxanan û bi tekoşînê dîsa ji qatî bû. Û ev biryar bibe sebebên çi yekan, bilindkirin û domandina berxwedanê bû.

## PÊKANÎN Û BÎRYARKARÊN MAHKEMÊ PERRÊ PÎRSA DÎROKÊ NE

Çewa qolonyalîst bi amanca binxistina doz û bîr û baweriyê girtîxanan bikar anîbin, dîsa bi destpêkirina mahkemên 13 ê Nîsanê 1981 xebatan dan pêş xwe ku vê ji bikin rewşek binxistina dozê. Lê, ji ber domandina tekoşînê û bilindbûna berxwedanan mahkeme bûne cihgera şoreşger û doza şoreşê û li hember hêza qolonyalîst serfirazîyan pêkanîn. Çewa bêdad û qeyd û benda işkence û zerpên girtîxanan pêkanîn bi vî pergalî tevgera nemirovî di mahkeman da domandin. Esirên şer, bi zinciran girêdayî dihatin qada mahkeman û li vê derê dibin zerp û zilma leşkeran da radiwestandin. Her mafên parastina wan tunebû, avukatên wan ji her bihn dibin zerpên girandabûn. Bi gefên zerp û girtinan ji bo bêdengbiminin dibin rewşên dijwarî de dihiştin. Ji bo paşmanbûyina xwe zerpên giran li girtîyan dibû bi her tewrên biryar domandinê işkencên nemirovî bi hemû pergalên hovberî pêkdihatin.

Di pêkanînên mahkemê û girtîxanê de ku serneket, veqetandina girtîyan nebû çare vê demê hêja qolonyalîst tunekirinên li ser pêkanînên nemirovî kire karê jiyana xwe.

Li gor amancê burjuvaziyê Tirk, rewşa mahkeman bervajî guhurî û bûn hember qolonyalîstan çekê tekoşînê. Bi rastî ev çek bervajî guhurî. Ew çekên dij şoreşgeran, ew çekê hember gel bervajî dij qolonyalîstan karhat bi vê têgihiştinê, hêzên qolonyalîst hedana biryarên darxistinê nekir, tevgerên tunekirinê pêkanî û vê domand.

Nexasim vê êrîşa li ser rêberan pêkanî di 21 ê Adar'ê 1982an de endamê KM ya PKK Mazlum DOĞAN, 22 ê Adar'ê de tekoşerê rêber Ferhat KURTAY û Eşref ANYAK bi şewitandin û fetisandinê qetilkir.

Li mahkeman, û sazûman, bi hêza polis û ceşi û di hêlên bi hêz de ji ji hebûn û tevgera şoreşgeran û bilindahîya dozê hêzên qolonyalîst bi tirs û şikan rojên dide êrîşên nemirovî û hovîtîya domand. Ji ber têgihiştîyê vê yekê ye ku bi pirane wan qetil bike ew ê tesirên giran li ser gel ber bi erinî va pêk were, kuştina rêberan da pêş û vê yekê pêk anî.

Ancax hember pêkanînên mahkema û girtîxanan şervanên PKK, endamên KM ya PKK M. Hayrî DURMUŞ, Kemal PÎR û girtîyên berxwedana rojîya mirinê 55 roj domandin amancên xwe û amanca qolonyalîstê Tirk bi cihanê daxûyan kirin. 14 ê Tirmeh'ê rojîya mirinê destpê bû û 8 ê Êlûn'ê 1982an bi şehîdketina M. Hayrî DURMUŞ, Kemal PÎR û Akif YILMAZ giha dawîkê. Bi rewşa bermirinê girtîyên şer berxwedanê domandindine û ala berxwedanê di vê rewşa xedar de ji destnexistine. Bi rastî ji, her rêberên wan qetilbûbin ji, girtîyên tekoşîna netewî ala berxwedanê ala tekoşînê û kel'a berxwedana parastin.

## DÎ VAN MAHKEMAN DE QEYD Û BENDÊN ŞER JÎ BÎKAR NAYÊN

Hêza qolonyalîst, van herdû salên dombuyina dozan de qeyd û bendên xwe bikar neanî. Di dozên PKK de, hêza qolonyalîst, ji ber tirsa dozê her

dozên girtixana bikarê dad'i xemilandibe ji hew hedan pê hat biryarê tunekirinê ro-biroj pêk ani.

Zelal e ku pêvajoya pirsina 5000 girtiyên PKK wê bigaha salan. Lê, rastiyek di ev e ku mahkeme bê qeyd û bend didomiyan. Yani; mafên gotin û parastinê hertunebû, tenê dilxwazvaniya tevgera hemberê dewletê dibû sebebê biryar sitendinê. Loma, dawayên PKK ew dawene ku dibin kirasê dad'i de qirkirina esirên şer pêk dibû û bûbûn cihgera daxûyana qetliama û hemû mafên mirovi, û qeyd û bendên şer ku li hemû cihanê bikar tên di van dawan de hatine eciqandinê.

Herdu hêlên nav şerek eşkere de qeyd û bendên navnetewa li ser tevgerên wan bikar tên û hêl bi van qeyd û bendan ve girêdahi ne ji bo hêza qolonyalist ev ji neyên gotinê ne. Lewra; ji ber hemû taybetên rejima burjuvayê Tirk li ser êriş, hoviti û qetliaman aveye ne pêwiste pêkanina van qeyd û bendan navnetewa ji bo dewleta Tirk bêne gotinê. Kuştina endamên KM ya PKK, şoreşgerên navdar Mazlum DOĞAN, Kemal PİR, M. Hayri DURMUŞ, û gellek şervanên PKK nişanê vê yekê ne.

## BİRYARÊN DARVEXİSTİNÊ DAXÛYANBÛNA BİNKETİNÊ NE

Hêzên qolonyalist bi qetilkirina rêberan domandina mahkeman leztir xist û di ber pêvajoya derbasbûna "sazûmana sivil"i de dawayan gihande dawikê. Lewra bi vi awayi "sazûmana sivil" ji biryarên kuştinan xelasdike. Ji ber vê hê beri gihiştina vê rewşê ji bo pêkanina bidarvexistina xwe bikar dike. Û eşkereye ji alik ve ji bo derbasbûyina "demokrasiyê" *lemba şin* pêdixin ji ali din ve li dû-hev biryarên dervexistinê pêktinin. Dawikanina dawaya PKK ya Birecik ku derheq girtiyan de 7 bidarvexistin û muebetek di 3 ê Gulan'ê 1983 eşkere bû û di 25 ê Gulan'ê 1983an di dawa PKK ya Diyarbekir de sitendina biryarê bidarvexistina 35 û biryarên muebeta 19 şoreşgeran dibin nişana amanca qolonyalista Tirk.

Lê, ev netica ji destpêki ve qolonyalista Tirk xwe jê disitrand daxûyanê meydanê bû û bi van biryaran hêza qolonyalist vê li xwe dani. Ku ji destpêki ve tevgera tekoşina rizgariyê mina refek isat bide daxûyankirin, bi van mahkema û biryaran pûçitiya vê eşkere derketiye holê. Bi qetilkirina yeko-yeko rawestandina tekoşin rizgariya Kurdistan pêknehat û tekoşin roj-biroj pêştir bû. Ji ber vê rewşê biryarên darvexistinê daxûyanbûna binketina qolonyalistê Tirk didin zanandinê. Û daxûyanbûna binketina siyasi bixwe ne.

## BİRYARÊN DARVEXİSTİNAN Bİ QİRKİRİNÊN GİRSEYÎ DİXWAZİN PÊKBÎNİN

Dema 25 Gulan'ê 1983 biryarên dawa Diyarbekir ya PKK bi biryarê darvexistina 35a daxuyan bû, ceşa qolonyalista Tirk di sinorê Tirkye-İraq'ê de kete nava Kurdistan'a Başûr û qetliaman pêk ani. Ev herdû pêkhatin bêguman ne tevgerên lihevhatibin.

Bi pêkanina vê tevgerê hêza qolonyalist, ji aliki ve pêkanina darvexistina da pêşxwe ji aliyê di ve amanca pêkaninên qetliamên girseyê eşkere kiriye û ji gellek sebebên di bi pêkanina vê tevgerê çavtirsandina gel xwest pêk bine. Hêza qolonyalist bi vi awayi qirkirinên dema berê birtine û li hember her pêşveçûna daxûyanên eşkere dike ku ew ê bersivên wi qirkirinbin. Ji bo vê yekê di pêkanina tevgeran de hêlên sinor bijarti ye û vê pêk ani ye.

Li hember bidarvexistina rêberan hêzên qolonyalist têgihiştiye ku gel bêdeng namine û ro bi roj tekoşina rizgariyê xwe digre û pêşde diçe, hember van yekan bi tevgera êrişbaziyê eşkere dide nişandan ku biryarên bidarvexistinan ew ê bi qirkirinên girseyi pêk bên. Rasti ji pêkanina darvexistina şervanên PKK ji tesirên erini, ji geşkirina hemberiya dijmin pêştir tu tişt pêknaynin. Ji ber vê yekê ger amanc tunekirina tekoşinê be; êrişa kaniya tekoşinê ji dijmin re çarenin e. Bo vê ji zerp û êrişa dijmin li ser gel dikemile. Lê, iro gel'eki di nav şer de kemiliye heye û tunekirina vi geli û PKK nemumkine. Bi têgihiştina vê rastiyê bi êrişa xwe ya zeftkari hêza qolonyalist şerê hember gelê me û PKK vegirti ye bi navê "derketina İraq'ê" xwinrijandinê pêştir dixe. Demên berê vê bi navê operasyonan pêk diani. Lê; di tevgera xwe da rastiyê bi alema cihanê daxûyan bû ku ev êriş bi hemû destikên şer; tanq, top hwd. pêk tê. Vê ji cihanê re daxûyan kiriye. Li ber çavên hemû cihanê bi hemû destikên xwe gundên dor sinor zeftgirtiye. Ev pêkhatin û tetbiqata "hêza çeleq" amanca emepryalizmê li ser Kurdistan'ê zelaltir dike.

## Bİ BİRYARÊN BİDARVEXİSTİNAN Û Bİ QETLÎAMA ŞERÊ SERXWEBÛNA GELÊ KURDİSTAN RANAWESTE

Di pêvajoya hem-demi de hember qirkirin û zerpên qolonyalist û emperyalistan tu tekoşinên gelan tune nebûne. Gelên di nav şerê serxwebûnê de hember êrişên dijwar disa tekoşina rizgariyê pêşdixin û ber bi serfiraziyê diçin. Hê di pêşketina destpêki de be ji di rêberiya PKK de ew ê tekoşina gelê me pêşveçûna xwe bidomine.

Binneketina tekoşina me di zindanan de bi hemû pergalan kifşbûye. Di rewşa xedar û dijwar de domandina dozê bir û baweri be û bilindkirina tekoşina berxwedanê dana jiyanê be wê gavê gel ê di vi ali de kemilandi binnakeve. Ger dijmin hewqas har û êrişbaz be di vê rewşê de binketina xwe dibine û ji ber vê her bi rojên bihuri hêza qolonyalist hovtir û dijwartir dibe.

Lê, ger di zindanan, ger di pêkaninên ser gel de hêza qolonyalist ew ê di gola xwini de bêyi fetisandinê. Lewra zilm û zerpa wan ne ku tekoşinê rawestine; dijmin di derdorên vê rewşê de tê ber fetisandinê, hêrs û dijberiya gel hember qolonyalistan geştir dibe. Gelê Kurdistan ew ê xwedi li lawên xweyê dilsoz, şervanên tê bidarvexistin û kuştinê ew ê derbikeve û herbihn tekoşinê bilind bike.

## HEMBER QİRKİRİN Û BİDARVEXİSTİNAN GELÊN CÎHANÊ PİŞGİRTÊN ME NE

Hember amanca tunekirina gel û pêkaninên nemirovi û di rêça domandin û bilindkirina tekoşina berxwedanê da gelên cihanê hevkar û pişt-

*(Dûmahik di rûpelê 16a de ye)*

# ŞERRÊ Dİ NAVBERA HÊZÊN DİJ-REJÎMA İRAQ DİVÊ BÊYÎ RAWESTANDİN

Di dema irohî de, ji ber vê rewşa erinî, hoyên hundir û derva fêde bistînin û ber bi serfiraziyê biçin, di dema xebatên piştgirtî û cebhê têne kirin, ew hêzên hember rejîmê demên dawî de li hember hev û dû şerr vekirin e. Ji xeynî ku dibe sedemê xwînrijandina şervanan di rewşa hûrbijariya Rojhelata-Navîn de ji ber pêjrandinan tine holê, hêlên şoreşger û pêşverûyên Rojhelata-Navîn van pirsan dikin:

Ma hêzên Kurdistan'a Başûr xeletîya xwe ya dîroki dîsa pêktînin? Ma gelo di ber bidestxistina sazûmanê, hêzên Kurdistan'a Başûr dikevin rewşa hêzên Îran'ê? Li ser sazûmana Îraq'ê kîne şer dikin? Bersiva gerîneka têdanê çi ye?

Tê zanin ku pişt şerrê duyemîn iro Rojhelata-Navîn dema xwe ya giran û germtir dijî. Mirov dikare bine zman ku iroj Rojhelata-Navîn di alîyên aborî, siyasî, eskerî, têkilî û hwd. de bê daxûyanbûna şer, şerekî giran lê tê domandinê. Ku Rojhelata-Navîn xwedîyê pirsgirêkên giran yên civak û netewa ye, ji vê rewşa Rojhelata-Navîn, ev hoyên germ ji xeynî hin deman ji dîrokê ta rojên me dom bû ye. Yanî ne Rojhelata-Navîn û ne gelên cîhanê ji berberî û tekoşînên vê hêlê biyan nesekinî ye. Lê, her ku berberî û tekoşînên hemberîyê bi germî dombûbin ji, pergalên berberî û tekoşînên hemberiyê bi balkêşî firehbûne.

Li ser pêşveçûnên rewşa iro hin girêdankê ne demî hebin ji, rewşa iro pişt şerrê duyemîn ê cîhanê virde bi pêşveçûnên aborî û siyasî hatiye kifşkirinê. Ji ber vê navça berberî û tekoşînên hemberîyên Rojhelata-Navîn ku bi şerrê cîhanê yê duyemîn bêrayanîna gelan, serdestîya li hêlê avabûye û emperyalizma USA bûye serkarê wê, bi amancê domandina serdestîya xwe statûkoya hêlê pêkanîne, li hember vê rewşê rawestandina hêlên sosyalîzm û demokrasîyê amanc dikin ku vê rewşê bipelişînin û rewşek nûh li Rojhelata-Navîn ava bikin. Tekoşîna van herdû hêlan rewşa Rojhelata-Navîn dikifşîne.

Tengasiya emperyalîzmê û ji ber pêşveçûna tekoşînên gelan berberîyên navbera hêlan iro bi hemû awayî xwe bi stratejîkî, taktîk û rêxistinî derdixe meydanê û pêşveçûn bi vê nûhbûnê pêkdibe. Di rojhelata iroj de hêzên şoreş û dij-şoreşê ji bo guhartina rewşa Rojhelata-Navîn ger li gor pêşveçûyînên objektîvî xwe di alî stratejîk, û rêxistinî de bikar bînin û pêkanînên nûh derbixin ew ê guhartina rewşa Rojhelata-Navîn bi van yekan be. Lewra rewş bi van yekan ve girêdahî ye. Ku herçiqas hêzeka ber bi paşveçûnê ve biçe ji emperyalîzm salên 1980 li Rojhelata-Navîn kozên nûh bidestxwe aniye lê, çiqas hêza gelan û sosyalîzmê hêzeka pêşveçûyî be ji sedemên destderketîyên kozên vê hêlê li ser têgihiştin û tênegihiştina vê pirsgirêkê pêkhatine.

Ev rewşa em li serê dîsekinin bi hemû xedarên xwe iro giringiya xwe dide nîşandanê. Ev rewş ji bo hemû hêlên Rojhelata-Navîn di serî de ji bo hêlên navça şerrê germ, Filistîn, Lubnan, Îran, Îraq û mîna bi rewşa Kurdistan'ê xûyane pêwîstiya xwe bi girani li van derdoran nîşan dide.

Bû derbek ji bo paşveketina emperyalîzmê tevgera gelên Îran ku ketîye gerînekeka giran, hêzên Îraq û Kurdistan'a Başûr ku li ber serfirazîyê, kêm radiwestin, derbxwarina tevgera Filistîn û ku di vê rewşê de dibiya berpirsiyarîya xwe ya dîroki bileystîyana tekoşîna şoreşa Kurdistan ji ber jarbûnê xwedî li vê berpirsiyarîyê dernayê û pirsgirêkên li ber wê, hwd. hemû ji ew rewşa ku me li jor taybetên wê daxûyankir jê di ajinin. Ku di vê rewşê de êşa van yekan tê kişandinê. Ger hêlên Rojhelata-Navîn li ser van bingehan ji vê rewşê dernekevin, rêya vê yekê heye ku bê êriş û destavêtina emperyalîzmê, bi berberî û şerrên hemberîyê hêz û kozên hêlê ji pejrandinan nefilitin. Heke hêzên şoreşger û demokrat ji vê rewşê xwe derbikin û li ser taybetên rewşê xwe bikemilînin, ew ê bi serfirazîyên şoreşan di nav cihê şoreşên dinê de rê bigrin.

Di rewşa Rojhelata-Navîn ku hewqas xedar e de navçeyeka germ Îraq'ê ye. Ew pirsgirêkên me li jorê gotîye hemû li rewşa Îraq'ê kombûn e. Ji pêşveçûna rewşa Îran'ê, û nexasim ji ber pêşveçûnên navça Kurdistan'ê pêwîstîya vê derê girantir dibe.

Bellê, bi rastî tekoşîna şoreş û demokrasîya Îraq'ê rewşa şerê hêlîki nîşan dide. Û di nav xwe da gellek pirsgirêkên dijwar, lihev zeft girêdayî xwedî dike. Ku li ser vê hêlê ne dem û hemdemî ji alî eskerî û polîtîkî xwe lê

girtine, bişkaftina pirsgirêkan li ser polîtîka û tekoşîneka şoreşgerî ew ê hatina şoreşên hêlên bela bike û ev yek gellek pêwîst e. Ji bo hêlên şoreş û dij şoreşê guhrandina mêzina hêlê di pêvajoyekî de derbas dibe. Bi hemû rewş û taybetên xwe tevgeran vê navça germ, tekoşîna sosyalîzm û demokrasîya Îraq'ê gellek giring e.

Lê, berpirsîyarên ku ew ê dîrokê pêşde bixin, hêzên sosyalîst û pêşverû ji kêmasîyên xwe pirsgirêkên rewşa xedar didine nîşandanê. Ew kozên hemberê rejîma Îran destketinê, ku van ji bidestnexistine ku çewa hêzên hember Îran di rewşek pêjrandidane, mîna li ber vê pêvajoyê mabin.

Tevgera hêzên hember Îraq'ê yê nezelalî ya proxram, taktîk, stratejîk û rêxistinî ji vê rewşê bikar û bar be jî, ji ber tekoşîna Kurdistan navçek pêwîst e di Rojhelata-Navîn de hêzên Kurdistan'a Başûr hewqas pêştir xwedîyê neerînîya ne û bi vê xwedî barin. Ji ber vê pirsgirêkê di vê nivîsa xwe da em ê bi giranî li ser van hêzan bisin û hin pêşnîyaran daxûyan bikin.

Îrojî hêzên Kurdistan'a Başûr bê li gor pêşveçûnên civak, aborî û sîyasî gav bavêjin pêş de, di vê pêvajoyê de jî proxrama xwe ya berê a otonomîyê dixwazin pêk bînin û dîsa jî keys û berberîyên herdû dewleta fêdê distînin. Û li ser vî bingehî tekoşîn dimeşînin. Yanî ne li ser bingehên tekoşîna polîtîkî û îdîolojîkîya rast û bi pergalên erînî ji keysan fêde nastînin; mîna xeletîyên xwe yê berê pêk tînin û bi vî awayî dixwazin bigihîjin dawîkê.

Li ser bingehên berberîyê hêlên derva pêkanîna tekoşîna bi giranî taybeteka hêzên Îraq'ê gişteki ye. Nexasim ev yek ji bo hêzên Kurdistan'a Başûr, taybeteka xûyane ye. Ger pêşîya vê yekê nêgirtin ev yek dawîkên pêjrandin û binketina van hemû tevgeran der bike meydanê. Lewra; xebatên di mehên dawî de ku li ser hev û dû pêk dihatin, ji bo piştgirtin û hevkarîyê û ji alî din ve meşandina berberî û şerrê dijwar nîşanin ji vê yekê re. Û ev rewş xedartir dibe.

Hêzên Kurdistan'a Başûr ji ber proxrameka şoreşger û demokratî ji bo Îraq û Kurdistan'ê pêk bînin, proxrameka welathiz û şoreşgerî ji Kurdistan'ê re pêşve bibin, li ser amancên xwe yê sîyasî ê kevn û xelet tevger datînin. Ji ber pêkanîna van proxrama pirsgirêka cebhê di nav tengasîyan de û pêjrandî dimîne. Hê mafparêzîya arizî, mafê hêlî û eşîrtî nava van hêzan dikeritîne. Û hê di navbera wan de bêhejmar berberî û şer derdikeve. Ji xeyn van yeka, dixwazin hêlên Kurdistan'a Bakûr û Rojhelat bikişînin nav van berberîyan, ji berberîyên xwe ra bikin destik. Û vê ne li ser pêkanînên rast dimeşînin. Ev rewşa ku berdevkên xwe li van hêlên di biafrînin, ji bo vê yekê têkilî û pêkanînên di meşînin dibe neerînîya taybetên van hêza. Û neerînîyeka xûyan e ev e. Ancax dibî ku ev tevger dest ji van xeletî û neerînîyên xwe berbidin. Bi hêlên din û girsên gelê Kurd ku li dervayê welatin têkilîyên xwe yê rast di karanînên xwe da bidine nîşandanê. Di vî alî de neerînîyên berê pêkneyên.

Îro Kurdistan'a Başûr di nav pêşveçûnên sîyasî û civakî da ye. Avahîya feodalî diguhure. Li ser vî bingehî ev hêz ber bi şoreşgerî mumkine ku gav bavêjin. Di rewşên erînî de tewrên komunîstî wê biafirîn. Û li ser tevgersazîyeka nûh nerîna cebhê pêk bînin û pêşvehatina welatperwerî xwe derxin rewşek nerînî. Xeyn vê jî tevgerên din, ew amanca xwe ya otonomî biguhurînin amancek şoreşgerî û mumkune ku li ser vî bingehî tevgersazî û pêkanînan nîşan bidin.

Nexasim ji ber şerê Îran û Îraq'ê şert hê zêdetir gihane. Ku ger hêzên Kurdistan'a Başûr xebat û hatina xwe ya berê bihûr bijarî bidine berçav û bi rexnegirî lê mêzekin û li ser vê bi hêl û hêzên şoreşgerê Îraq re proxramên zelal û rast derbixin û cebhe pêkbînin. Ne ew ê tenê ji bo Kurdistan'a Başûr, ew ê ji hemû hêlên Kurdistan'ê re karekî giran pêk bînin.

Bi pêkanîna van pêşveanînên erînî ew ê bi hêlên din re têkilîyên hêzên Kurdistan'a Başûr rast pêk werin, û di alî navnetewî de tengahîya heye ew ê vebibe. Ger di alî pêşveçûn û pêkanînên erînî de gav bêne avêtin ew ê ew dijminahîyên berê biqedin. Nexasim dijberîya navbera PDK û YNK û hêlên din wê bêyî hildanê. Ji xwe ew dijminahîya li ser bingehê berê avabûye ji guhartinan û ji ber rewşa sîyasî rê li van hatîye girtinê. Hêlên di vê berberîyê de xwedî sefîn, têgihiştîyê vê yekê bin ku ev tewrê wan zerar digihîne hemû hêzan. Ji ber vê dibî ku dest ji vî tewrê xwe berbidin. Welew bê dijberîya hev û dû ev hêl bi hêzên hemberên rejîma Îraq'ê re li ser amanc û pêkanînên taybetê hêlê tevgirêdanek dikarin pêkbînin. Ji bo vê yekê dibî ku şerrê navbera van hêlan bê rawestandinê. Ger bi vê têgihiştinê tevger deynin, ku xwedîyê serpêhatinên dewlemendin ew ê ev hêz netenê neerînîyan hildin, ew ê roleka pêwîst ji bo Tekoşîna Rizgarîya Kurdistan bileyizin. Li ser tewrmeşandina bi vî awayî em hêzên Kurdistan'a Bakûr, ji wan re li ser bingehên rast têkilîyan avakin, û di pêvajoyê de vî bigihînin hevkarî û yekîtîyên bi hêz. Çewan demê berê em ê dîsa jî di vî alî de xebat bidomînin. Û em ê bikar û barên xwe pêkanînan derdibixin meydanê.

*** Bimrî emperyalîzm, qolonyalîzm û paşverûyên hêlê!**

*** Bijî yekîtîya welathiz û şoreşgerê gelê me!**

*** Bijî piştgirtîya gelên hêlê, yekîtî û hevkarîya tekoşîna şoreşgerî!**

### CUNTA FAŞÎSTA QOLONYALÎST ÊRÎŞÊ KURDÎSTAN'A BAŞÛR KÎR

# Ew ê Tevgera Rizgarîya Netewa Kurdistan û PKK Bi Berxwedaneka Bilind Bersîva Êrîşên Nemirovî Bidin

Roja 25 ê Gulan'ê 1983 cihanê, pêkanina rûreşiya çina serdestê Tirka li ber çavên xwe dît. Gelên cihanê vê tevgera lihevkariya rejîma Seddam û qolonyalista Tirk, peymana li ser "Esatî" pêkhatiye, li ser êrîşa Kurdistan'a Başûr heyirî, bi girr û hemberî li dij vê rawest.

Mina weşînên cihanê didin kifşkirinê, despêkî de qolonyalistê Tirk amanca xwe bikiras dikin, dixwazin veşêrin, lê ji sedemên berxwedana hêzên Tekoşina Rizgarîya Kurdistan û dijberiya navnetewa; vê carê dest bi derew û daxûyanê xeletî kir.

Li gor agahdarîya me û bi weşînên cihanê ku daxûyanê cunta faşista qolonyalist roja 25 ê Gulan'ê 1983a li ser tevgergirêdan û pêkaninên hêla Hekkarî êrîşê Kurdistan'a Başûr kir. Ku ji mehan kardomandina tevgerê pêkdihata hêlên weşînê vê rewşê dineximandin. Pişt ku tevger pêkhat daxûyan dibe ku bi 45.000 hêza eskerî êrîş bikar anine û ev hêza eskerî bi helîkopter û teyarên balafirgeha Batman'ê hatine parastin û piştgirtîya wan çebûye.

Êrîş di nav hemberîyeka giran de pêkhatiye, girsên hêlê, di serî de PKK û hêzên welathiz û şoreşger hember êrîşê berxwedanek bi hêz avakirine. Disa weşînên biyana ku nexweşxanên bejayî, refên alîkarîyê li van dera girêdane eşkere kirin ku nexweşxanên bejayî yê "kizilay"ê bi lez û bez li van deran hatine avakirinê.

Qolonyalista Tirk emsalîya pêkanina Îsrail ku tevgera tunekirinê li Lubnan'ê girêda xwest wê li Kurdistan'a Başûr pêk bine. Sazûmana qolonyalist bi hêza xwe ya firok û bejîyê, bi bombe û berika hember hêzên Kurdistan û rêberên tekoşinê qirkirinê xwest ku pêk bine. Ev tevger nexasim hêla Hekkarî û li Kurdistan'a Başûr ji alî çekdarên hêzê gel va berxwedanan hemberî dît. Piranîya girsên hêlê ber bi hêzên pêşverûyên Kurdistan'a Başûr û hêlên dî ve koçber bûn. Ji qetliamên girseyî filitîn.

Bi agahdarîya êrîşê ji mehan ve hêzên pêşverû û şoreşgerî karbûnê pêkdianîn hêzên Kurdistan'ê bê derbên xedar ji nav vê êrîşa dijwar derketin û bi pêkanîna berxwedanan derbên pêwist li hêza êrîşbaz xistin.

Bellê ku di bihdemekê de rewşa şerî li Kurdistan'a Başûr pêk hat, cihan bi pergalên heyrîmayinê di pirse: çi dibe li Kurdistan'ê? Di rewşek hewqas xedarîya cihanê de, bi vi pergalî çewa tevger pêkdibe? Sazûmana Îraq'ê ji bo çi û bi çi awayî ray lê tîne? Navê tevgera Kurdistan'ê ku nayê zman çima hewqas xedar tê dîtinê? Tevger çi netîcan pêk bine? hwd. pirsan dipirsin. Dinya û gelên Rojhelata-Navin xwe li pêş pêkahtineka, bi hemû awayî tesîr li ser hatina wan tesîr dike xwe dîtin.

Ev yek bûyineka çarenîn bû. Lewra: mina karbidestên qolonyalistan daxûyan dikin amanca pêkanîna êrîşê "parastina tixûb û tevgera teng" nîn bû. Ji bo emperyalîzmê li ser vi bingehî ji bo pêkaninên êrîş û zefkarîyê bicih bine, di destpêkê de tunekirina Kurdistan'ê û taybetên Kurdîtî ji holê rabike, hêza rizgarîya netewî bin bixe, û rejîma diktatorîya Seddam bisitrine, ji bo emperyalîzmê rewşeka erînî li holê avabike, amancê van yekan êrîşê dabû pêşxwe.

Sebebên pêkhatina êrîşê, ji nêz ve dibi ku li pêşveçûnên Kurdistan'ê bê girtinê. Îro em li ber çavan dibinin ku ne tenê girêkên berberîyê Tirkiye û Kurdistan'ê; yên Rojhelata-Navin li ser navça Kurdistan'ê bersiv dibinin.

Ji dîrokê ve çina serdesta Tirk û taybetên iro dibinin ku di herdemên tengasîyan de bi pêkanîna talan û êrîşa gelan xwestîye tengasîyên xwe bibuhurîne. Îro bi hebûna burjuvazîyê Tirk ev taybet derholê bûye û dixwaze tengasîya xwe li ser van pêkanînan bibuhurîne. Ku kapitalîzma Tirk bi hemû taybetên xwe di nav pûçî û pêjrandinê de dimine. Di pêvajoyê de bi derbek faşist xwest ku hebûna xwe bisitrîne, ji bo jiyandomandina xwe lûla jiyana abora xwe vedike derva, di vi alî de malşirîkîya wî û emperyalîzmê pêk tê. Ji sedemên van yekan xwe bi pergalê emperyalist û qolonyalist dixemilîne.

Di vi alî de Tevgera Rizgarîya Netewa Kurdistan ji bo emperyalîzm û nexasim ji bo karbidestên Tirk tevgereka xedar tê dîtin u dibi ku binxistina wê pêk were. Lê burjuvazîyê Tirk baş dizane ku ev yek ne hêsane. Lewra pêkhatina êrîşa Kurdistan'a Başûr ne ji îro ve pêkhatîye; ev pêkhatin domandina pêkanînên li ser tevgera Tekoşina Rizgarîya Netewa Kurdistan û PKK tê domandin; perçek ji vê amanca tunekirinê ye.

Ji afirandina PKK ve hember hêza tekoşinê pêkanînê tunekirinê domandiye, di sala 1978an da qetliama Mareş'ê wê daxûyan kirîye û vê amanca xwe her gav li ber çav rawestandiye. Pêkanina örf-i idarê, operasyon û tetbîqatên domand ji bo bigihije serfirazîya xwe, ji paşverûkan ta hêlên sosyal-şoven û refên burjuvayê biçûk êrîşa ser PKK bi dijwarî pêkanî ye.

Ev êrîşa tunekirina bi hemû pergal û destikan hatî domandin, bi 12 ê Êlûn'ê gihaye qeysa şerî. Rastî ji tevgera tunekirina Rizgarîya Netewa Kurdistan û rêberê tekoşinê PKK bi 12 ê Êlûn'ê bi pergalên şerî ji hêlên gundîtî ta hêlên girtîxana bi hemû dijwarîyan hatîye domandinê, û ji bo serfirazîyê hemû destik û pêkanînan daye pêşîya xwe.

Lê, di nav hemû pergal û rewşên dijwar de berxwedan û pêşveçûna PKK ranewestîya ye, pêşvetir çûye. Welew wundabûnên pêwist dibe ji, hember hêza qolonyalist bi hêz rawestîye.

Di nav dijwarî û êrîşên dij-şoreşî de Konferansa Yekemîn kemilandiye; Kongra xwe ya Duduya pêkanî ye û li ser bingehê pêşxistina tekoşinê adan ev karbûna xwe herikandî ye nava welat û li ser vi bingehî xwe ber bi xemlandinê ve birî ye. Îro ev kemilandinên pêşveçûnên PKK gihane pêvajoya şerê gel û di vi alî de hêza şoreşê xwe daye nişandan.

Bi têgihiştina vê rewşa xedar serkarên cunta bi hemû hêza xwe ji nûh ve tevgera tunekirinê girêdane. Ji alîkî ve derheq şervanên şoreşê de biryarên darvexistinê pêkanîn, ji hêla dîn ve hember hêzên berxwedanê eşkere

(Dûmahîk di rûpelê 16a de ya)

# HEVPEYVÎN Bİ ANÎTA GRADÎN RE

**BERXWEDAN**- *Derheq pirsgirêkên koçberan yên aborî, civatî hwd. xebatên pêktên û pirsgirêkên pêşberî wê dibin, di derdora berpirsîyarîyên xwe da wun dikarin vejandineka kurte-birî li ser van yekan daxûyan bikin?*

**Anîta GRADÎN**- Mina tê zanîn, ji xeynî hatina biyanan nexasim koçberên polîtîk têne Swêd.

Ev ên têne Swêd çareninine ku sebebên hatina xwe daxûyan bikin. Ji bo me ji hatinê ra sebeb dibî ku hebin. Ji rewşê agahdarî pêktê ku piranîya biyanên hatine, koçberên polîtîk in. Di salên dawîyê de nêzî 7000 koçberên polîtîk û hewqasan malî (zwaç û anîna malîyan hwd.) ji sebebên kifşî hatine vêderê.

Ji ber vê rewşê, di destpêkê de zûtirkirina serîlêdanê polîtîkî datînin pêşîya xwe. Lê, mina tê zanîn gellek caran biryarsitendina derheq serîlêdanan hêsan pêk nayê. Ev, dibe sebebê dirêjbûna demê. Lê, bi hemû yekan em li ser vê disekinin ku netîca di demek kurt de pêkbinin.



*Anîta GRADÎN*

Ji bo pêvajoya duyemîn; (pişt ku ray li rewşa wan dibe) ji bo di nav civaka Swêd'ê koçber bi cih bibin an destê alîkarîyê dirêjî wan dikin. Hînbûna zmanê Swêdî, taybetên jiyana berê (zanistîya wê, kîjan dibistane xwendiye, çi karî dike, hwd.) bi karên zangêrîya Swêd va girê bidin. Bi hînbûna zmanê Swêd zanistîya xwe di demek kurt de biqedine, karek ji xwe ra bibine, bibe xwedîyê kar. Hin koçberên polîtîk di nav zangêrîyê da ne. Wê gavê pirsgirêkek ev ê ku em destê alîkarîyê dirêjî wan bikin ku zangerîya xwe bidomînin. Mina wun jî pê dizanin tengasîya aborî li Swêd tesîr li karê jiyanê dike. Û çewa îro rewşa jiyanê dijwar dike ew ê bi salan vê dijwarîyê li ser jiyana kar bidomîne. Wiha xûyan dike.

Berberîya kar, kêmasîya zman hwd. li gor demên berê karditina ji bo biyanan dijwartir dikin. Niha pirsgirêka pêş me cihkirina koçberan û bersîvanîna pirsgirêkên wan e. Em li ser van yekan xebat dikin.

**BERXWEDAN**- *Ne li qeysa welatên Awrûpa be jî, dijberîya hember biyanan pêktê berçavbûna tengasîya aborî tengasîya jiyana civakî û derheq pirsgirêka betalîyê de jî bû bişkavtinek kurtîka me heye?*

**Anîta GRADÎN**- Belê ger li dema berê salên 1982 bê nêrînê eşkere xuyane ku ji debara herkesek Swêdî ji %2 û ketina debarê xûyandibe. Ji bo pirsgirêka aborî zana û hunermendê Aban'ê ta sala 1983ya jî bilindbûna debarê nadin berçavên xwe. Mina pêşî min go di demên tengasîya aborî de bi piranî kêm ref di alî debarê de rewşên dijwar dijî. Ev rewş, biyanên, koçberan, seqet, sêwî û xortê di hoyên dijwar de dirawestine. Bersîvanîna tengasîya aborî bo min pirsgirêkeka pêwîst e. Ji xwe bersîva min ê tengasîyê di beyana hukumetê de kifş bûye. Bi van programên hukumetê pêk anî ye, daxûyana ku di diravên hêla kar, alîkarîya abora karanînê tine. Ji bo abor di rêçek rast de bê gerandinê ji xeynî wan yekên develasyon jî bi destkî hatîye xebitandinê. Îro, mina tê dîtin tesîra van yekan hemû xwe daye nîşandan. Lê gellek şaxên endustrîyê hemû hêza xwe nikare bikar binin. Tenê di %70 vî karî pêktînin. Helbet pêkanîna vê hêzê dibe sebebê bikarîyek bilind. Wê gavê domandina wan tedbîrên polîtîk dertê pêş me. Ji bo biyan û koçberan fonên arizî pêk hatin. Nizam wê proja Kista bihistîyê ji bo vê henkerek bê danê.

Ji bo ku biyan û xortdi hêla kar de xwedî kar bibin û ji bo alîkarî bi wan re beyî kirin imkanên arizî ji sazûmanê karger û ji hêla karê pêk hatîye. Ev karanîn li gellek ciyan heyî di vî alî de bêguman gellek biyan di heyre ku neheqî li wan dibe diminin. Nasbendîya dijin û dibînin ku, ez jî bawerî tînim ku navbendîyek wiha heye. Heta memûrê karî, ji bo kar, dema serîhildanê ku nav ne Andersson, ne Petersson û hwd. be sitendinê wî dijwartir dibe. Hetta niha bendîtîya pêkhatî negihiştîye qeyseke bilind. Li gellek hêlan ev pêktên û tênê jiyandin. Lê hember wan tedbîrên bi tesîr hatine sitendinê.

**BERXWEDAN**- *Hin hêlên berpirsîyar û sazûmanên koçbera, mina ta berpirsîyarîya wê agahdarî bûye, ji bo hêlên hember zilm û zerpê koçber bûne, bi cûdatî û li ser esasên hêlî serîlêdanên koçberan dimeşînin vê yekê bi çi awahî dibînin?*

**Anîta GRADÎN**- Hatina hêla ne ya vejinandinê ye. Ger kes li welatê xwe di bin zerpa polîtîkî de be ew kes koçberê polîtîkê ye.

Hêlên biyanan û hukumet dema pirsgirêkek divejinînin wê gavê hep hep li serê disekinin. Ji ber çi sebeban hatîye vegerandinê ew ê çibê serê wî hwd. bi hûr-bijarî li ser tê seknandinê. Hêl ji bo vejandinê nabe destik û nabe bingeh.

BERXWEDAN- *Mîna tê zanîn koçberên hêlê Kurdistan'ê her ku hebûna van dewleta nasnakin ji dîsa, ev welatiyê van dewleta têne dîtin. Herçuqas tu têkiliyên wan bi van dewletan re nemabe û tine be ji di statuyan wan dewletan de têne beşkirin û karê wan bi vî awayî tê domandinê. Ji bo ser rewşa û ji bo ku ev hêl welatiyên van dewleta nêne dîtin û di statuya van dewletan de karê wan nê meşandin tu xebatê we hene?*

Anîta GRADÎN- Yê ku tê vêderê xwediyê pasaporta Tirke ger Kurd be ji ji ber vê; bi welatiyê Tirkiyê, Îran, Iraq'ê derbasî qeydê dikin. Qeyda wan li ser bingehê pasaportê pêk dibe.

Ji bo welatî û girêdaniya netewatî du taybet hene. Ji bo me ev derbas dibin. Ger mîsalek bidim: ger kes ji Iraq'ê hatibe, û li Iraq'ê jiyan domandibe ew bi welatiyê Iraq'ê tê dîtin. Lê, ger kes di navbera Tirkiyê û Iraq'ê de jiyan domandibe, yanî eskeriya xwe li Tirkiyê kiribe û li Iraq'ê mabe an ji hêlek wek Lubnan be wana di nav statuya newelatî de tên dîtinê.

BERXWEDAN- *Derheq karanîna giraniya girsa koçberan de bi her hêlî agahdarî çêdibin ku dewlet û sazû-*man vê girsa pêwîst ji amancên polîtîka xwe ra dikine destik, li ser hebûnên vê girsê polîtîka dimeşînin, derheq vê rewşê de dîtina we çiye?

Anîta GRADÎN- Mîna tê zanîn polîtîka biyana li ser mafên hilbijartinê, wekhevî û amanca demokratî pêkhatiye. Derdora vê de li vê amanca yekemîn: ew insanên ku hatine vêderê, ji bo li Swêd bijîn, hînbûna Swêdî ye. A duyemîn, sitendina çand û serpêhatinê girsê ji bo me ne mumkine. Sebebê sitendina van yekan tune. Nexasim ji bo çand û taybetên xwe pêşde bivin alîkariya proje û xebatan bi gelek rêxistinên biyanan tê kirin. Ku hebûnên xwe pêşde bibin. Domandina Kurdîtî, hebandina Swêdîtî, an sekna navbera herdûya girêdahî kesa ye. Di vî alî de dîtina me ye ku; xwedî li taybetên xwe û hatinên xwe derbikevin. Ev tiştekî baş e. Û ji bo pêkanînan hînbûna zmanê Swêdî em bawerin ku tiştek çarenine. Lewra: jiyan û pêkanîn ew ê bê vê dijwar be.

BERXWEDAN- *Mîna tê zanîn; cunta faşîst ji bo cihgera xebata şoreşger û welathizan teng bike û derheq rêber û xebatkarên wan de şika pêk bîne beyanên nerast daxûyan dike. Û qeyd û bendên mafê navnetewa ji bo amanca xwe ya rûreşî dike destik. Welatên sefgirtê van benda dike spara xwe ku derheq van kesan de pirs vedike. Vê rewşê bi çewayî dibînin?*

Anîta GRADÎN- Kî wilo dike? Rexnên we derheq Almanya Roava de pê dizanim ku ew ê hebin. Bi wan re van yekan bipeyvin. An ji ev karê rêxistinên wê derê ye. Berpirsiyarên sazûmanên Almanya Roava pê nizanim çewa dixebitin. Her dewletek sondxwar e. Dewleta Swêd derheq xebatên wan de dest naxe nav karên wan. Ev karek berpirsiyariya wan e.

Em ji alî xwe va qîmet didine lihevhatina Cenewre, û li ser vê yekê pêkanînên xwe dimeşînin.

BERXWEDAN- *Endametiya Konseya Awrûpa, rojnamevanî, hwd. û piştgirtekê tekoşîna gelê Vietnam, Îspanya, Portekîz û hevalkariya gelê Yunan hember cuntaya te bi rewşa milletwekîltî pêkanî û di van aliyan de xebatan kiriye. Tu karî xebatên xwe yê van aliyan bi kurte-birî daxûyan bikî.*

Anîta GRADÎN- Derheq pirsgirêkên Navnetewî de 30 sal xebitîme. Ji ber vê yekê, di vê pêvajoyê de bi gellek bûyerên polîtîkî ra têkiliyên min çêbûne. Ev dibe nîşana partîya pêva girêdayî me ku çiqas piştgirtîya navnetewatî pêwîst dibine serekettîya jina; ji ber pirsgirêkên jiyana jina bû û hwd. Endametiya Konseya Awrûpa min gotibû. Bi pergalê avakarê komîtê piştgirtîya gelê Yunan dema cuntayê da bû. Em vegerin pirsa...

BERXWEDAN- *Mîna tê zanîn bê pergalê mafê mirovî, qeyd û bendên navnetewî, li sergirtîxanên Kurdistan û nexasim li girtîxana leşkeriya Diyarbekir, qetliam, kuştin û işkencên pêkhatine bi gellek pergalan daxûyanê alema giştkî bûn û mîna agahdariya me ev pirsgirêk ji alî milletwekîlan ve hate rojava parlamentoya we. Di van mehan de dewleta Tirk bi tewrên siyasî, derheq gellek şoreşger û welathizan de biryarê bidarvexistinê sitend û işkence û bûyerên kuştinê dijwartir didomîn. Li hember vê dijminahiya mafê dij mirovî dewleteka ku dewleta Tirk giliyê Konsey'ê kiriye ku bê tewr û bê daxûyan maye, vê rewşê bi çi awayî dibînî? An tiştên pêkhatine dikarî daxûyanê me bikî?*

Anîta GRADÎN- Hê çend heftî berê biryarê derheq darvexistina 35 Kurdên Tirkiyê hate sitendin.

Ew nîşana wê ye ku ji bo Tirkiyê guhbide mafên mirovî û van pêkbine hember hemû tewrên mahkema Konseya Awrûpa hetta çiqas Tirkiye bêje rewşa min guhuriye ji ev çêdibin. Ev yek pêktên. Xeyn vê, pêkanîna anayasê û dûrkirin û rawestandina polîtîkaciyên berê yanî xebata sazkirina partiyan bi min ew ê li gor xwestin û hebandina generalan be.

Lê, Tirkiye hê hember mafên mirovî şûçên giran pêktîne. Nexasim komîsyona Awrûpa hember biryarê bidarvexistinan biryar sitendiye. Ev didin nîşandanê ku Tirkiye mafên mirovî dieciqîne.

BERXWEDAN- *Li hember van qetliam, işkence û kuştinên eşkere û rewşa ne li gor mafên mirovî hêlên Awrûpa; kes, ref û nexasim Amnestî vê rewşa nemirovî, û dijberiya mafên navnetewî daxûyanê cihanê kirin. Ku Swêd di nav dewletên cuntaya Tirkiyê giliyê Konsey kiriye di vî alî de ji hêla wezîrê derva û hêlan ve xebatan daye pêşxwe?*

Anîta GRADÎN- Îro bi pêkhatinên Konseya Awrûpa nizanim. Di vî alî de ji wezîrê derva hun dikarin hînbibin. Lê, dizanim ku hukumeta Tirkiyê di meha Çile de dem xwestiye. Ji bo demek pêş de bersivan bide. Lê, hêji ne bawer im ku bersiv dabe.

Di rewşek wiha de ji bo Konseya Awrûpa, Komîsyona Wezîra û meclîsê tenê rê, ji ber ku Tirkiye qeyd û bendên Konseyê bi cih neaniye dîtina rawestandina endametiya Tirkiyê derbikeve pêş. Û vê yekê pêkbinin.

BERXWEDAN- *Mîna tê zanînê hêlên demokrat û şoreşgerên Kurdistan û Tirkiyê hember bidarvexistin û işkencan xebatek derhola Awrûpê de dimeşînin. Bi serpêhatinên xwe derheq vê xebatê de dîtina te çiye?*



**Anîta GRADÎN**- Bellê, iro ji bo piştgirtiyên politiki ku di girtixanan de ne bi gellek pergalan xebatên piştgirtinê têne domandin. Navberiya van xebatan û serpêhatinê berê ev e ku komiteka bi hêz pêknehatiye. Ev ji ne kêmaniya Swêdiya ye. Mina we Kurdan rêxistinên Tirkan ji nayên berhev. Ev dibe sebebê parvebûnê. Du sal berê ji bo sazkirina komitekê xebatên giran çêbûn. Ji sedemên xuyane hemû rêxistin li hev komnebûn.

Em sefgirtiyê vê yekê ne; piştgirtina hêzên pêşverû û demokratê ku tekoşinê ji bo sazkirina Tirkiyeka demokrasi pêktinin.

Ji ali din ve, em agahdarbûyinê xwe ji sendiqên serbixwe, (AIS; Navça Tevgera Karkerên Navnetewa) ji delegasyonên diçine Tirkiyê, û ji avûkatan distinin. Avûkat Tomas Ragstel raporê xwe yê derheq mahkeman de daxûyankir. Xeyn van; hin delegasyonên resmi-neresmi ku diçine Tirkiyê hene. Bi vi awayi bi girtiyên politik û maliya re alikariya abori pêktinin û piştgirtiya hêllên Tirkiyê bikar tinin.

Em pêdizanin, li Tirkiyê cunta heye û disa em dizanin ku ew dixwazin sistema xwe bisitrinin. Berê di Konseya Awrûpê de xebitime. Min berpirsiyarê Tirkiye guhdar kiriye. Îdia kirin ku; "di ali mafê mirovi de tu xeleti nakin". Bi alikariya sazûmanên navnetewa, Tirkiyê vê yekê li xwe dani. Bi vi awayi di Konseya Awrûpa de ji li serê hate seknandin. Konseya Awrûpa li ser van agahdariya radiweste. Ji xeyni Tirkiyê rêxistinên din di vi ali de gellek kêrhatine. Sendiqa, û rêxistinên navnetewa ji bo BaştURK hwd. gellek gerên vejandinê pêkanin.

Derheqê Tirkiyê, girtixanan û buyeran agahdariya me heye. Mina tê zanin hukumeta Swêd, Norweç, Danimarka, Îzlanda, Hollanda û Fransa jiber mafên mirovi dieciqine Tirkiyê giliyên Mahkema Awrûpê kirine. Bi gumana em ê bi serê xwe vê yekê bi bersiv bikin ne pêwiste tevger pêk were. Di vi alide li holêye ku em li kijan ali radiwestin û li ser bûyeran, pêkhatinan disekinin.



# Cunta Qolonyalîst Êrîşî Kurdistan'a Başûr kir...

(*Destpêk di rûpelê 13a de ye*)

êrişê pêkanin. Bi vi awayi xwestin ji tengasiya xwe ra bibinin.

Lê, amanca êriş û pêkhatina wê ji ber berxwedana PKK û hêzên welathizên Kurdistan'ê negihaye seri, bi netica afiriye ev çek bervaji hember hêza qolonyalist rawestiye. Eşkere ye ji ber taybetên êrişê ew ê hemberi û berxwedana hêlên Rojhelata-Navin pêkwere û cunta bikeve tengasiyeka giran. Yekitî û hevkariya hêzên Kurdistan'ê ew ê bigihije bingehi hevkar û piştgirtekên Tekoşina Serxwebûna Kurdistan fireh bikin.

Ji ber taybetên eşkere hê ji destpêki ve amanc û pêkanina êrişê rewşeka xedar ji hêza qolonyalist re avakiri ye.

Di hundur de pêşveçûna berberiya hêlên burjuva wê pêştir bibe, ku ji xwe pêştir rêya jiyanê ji tu hêli re nabine ew ê cunta faşist di nav van êriş û dijberiya beşeri de ne ku rêya jiyanê bibine ew ê were ber bihna dawiyê.

Ku cunta qolonyalist li ser piştgirtina emperyalizmê ava ye û jiyan didomine, li ser vi bingehi hemberi û êrişbaziya gelên Rojhelata-Navin pêktine, çikandina kaniya jiyana wê helbet kar û barê hêzên welathiz û şoreşgera ye, girêdayê hevkari û piştgirtiya wan e. Netenê ji bo binxistina sazûmana Tirk û Îraq'ê binxistin û hilweşandina hebûna emperyalizmê ji girêdayê tevgersaziya tevgera Rizgariya Netewa Kurdistan û yekitiya berxwedanê ye. Ku wê hatina gelê me zelal bike divi ali de pêkanina xebatê gellek pêwist e. Xebata vi ali karê hemû kes û hêlên pêşverû, şoreşgerên Kurdistan e. Di vi ali de bêxebati, rawestandin bendavakari dijminahiya gel e. Avakirina tevgera hevkariyê ne tenê ji gelê Kurdistan re pêwiste, ji bo hêlên Rojhelata-Navin ev karê jiyanê ye.

Di vê pêvajoya emperyalizm û sazûmanên berdevk ji bo tunekirin û temartina tevgera gelan, êriş û pêkaninên dijwar dimeşinin, ji gelê Rojhe-
gellek pêwist e. Xebata vi ali karê hemû kes û hêlên pêşverû, şoreşgerên Kurdistan e. Di vi ali de bêxebati, rawestandin bendavakari dijminahiya gel e. Avakirina tevgera hevkariyê ne tenê ji gelê Kurdistan re pêwiste, ji bo hêlên Rojhelata-Navin

ev karê jiyanê ye.

Di vê pêvajoya emperyalizm û sazûmanên berdevk ji bo tunekirin û temartina tevgera gelan, êriş û pêkaninên dijwar dimeşinin, ji gelê Rojhelata-Navin û gelê Kurdistan re hevkari û avakirina piştgirtiya hêzi rêyeka çarenine. Xebat û pêkanina vê yekê berpirsiyariya gel û hebandina mafê gel e.

Bi vê têgihiştin û berpirsiyariyê em tevgersazbin, hember pêkanin û êrişa dijmin, cebha berxwedana netewi mina burcên pola em vebigrin.

Pêkanina berpirsiyariya hêzên Rizgariya Netewa Kurdistan, ji gellek taybetan bi hevkari û piştgirtina hêzên demokrasi û sosyalizmê ve girêdahi ye. Bêguman ji bo bişkavtina pirsgirêkên Rojhelata-Navin ku navçeka bingehiya Kurdistan û berxwedanên Rojhelata-Navin pêkhatinên vê navçê berberiya sistema emperyalizma pûç û berberiya hêza sosyalizm û demokrasiyê ye. Di vê berberiyê de gelên cihan û hêza sosyalizmê ji şirikê berpirsiyariya gelên Rojhelata-Navin û gelê Kurdistan in. Dibi ku ev hêz tekoşina berxwedanê bigrin û bi hêz bikin.

---

# DAWA PKK DAWA SERXWEBÛN Û ...

(*Destpêk di rûpelê 8a de ye*)

girtiyên gelê Kurdistan'in. Çewa mina gelê Vietnam di şerê serxwebûn û azadiyê de û çewa mina gellek gel didomandina şerê şoreşê de serpêhatinên gelan ji xwe ra danezan dibin ji bo gelê Kurdistan ji ev yek heye.

Li hember êriş û zorbaziyên berdevkê emperyalizmê, diji qolonyalista Tirk bilindkirina tekoşin û dengê gelên cihanê dibe hêz ji ezm û domandin û serfirazkirina tekoşina me ra. Domandin û pêkanina tevgerek hember dijmin, qolonyalista Tirk ew ê bibe bingehê avakirina biratiya gelên me.

Li hember sitendina alikariya emperyalist û paşverûkan ku ji bo hêza qolonyalist tevger girêdidin, gelê me bawere ku alikariya hêlên pêşverû ew ê ji nêz ve bibine û piştgirteki û hevkarên tekoşina gelan ew ê bibine.

# TÎYATRO -2-

*(Destpêk di hejmara derbasbûyi de ye)*

**Girtiyek li milê çepê mîna guhên xwe li dîwar pan kiribe, li hawirdorê xwe çend caran çavên xwe dive-tîne û xwe li quncê dîwar di telîne. Bi herdû destan; hêdî hêdî kefa destên xwe li dîwar digerine. Guhên xwe ge li vî alî ge li alî di dive-tîne. Û li ber dîwar qewzî ser hev dibe. Ku mêzedike sewt hêjî didome, bi dengek nizm gazî dikê.**

Cahît- Lo hevalo! eman hêdî, hêdîka. Niha wê hov bên êrişi me hemûyan bikin.

Muhsîn- Başe, temam-temam; erê ê ki yi? Çi kesi.

Cahît- Ezim. Berxwedar.

Muhsîn-
Li çiyê xwe kêfxweş dibe, bineka fireh distine. Hov hedan pê dikeve.
– Lê tu.., tu ne ew Cahidê me yê Batman'ê yi. Min ji dengê te...

Cahît- Belê.

Muhsîn- Yê rastê ki ye?

Cahît- Eli. Ew ji ji me ye. Wi nûh ji işkencê anin. Tu kiyi?

Muhsîn- Guhê wi bi diwar ve çavên wi dikevin erdê. Bînek dikşêne; bi made ki sar û bi raman: keko.. keko...

Cahît-
**Bi bersîvê ra sar dibe. Tûka qirêka xwe bi zorê dadiqurtîne. Arçûmekên xwe li hev dijdîne. Rûyên wi sar û sipi dibe, eniya xwe li nav kefa destê xwe digre, êş û raman ji rûyê wi tên xwendinê. Neksa wî radibe dadikeve. Bi axînek dirêj bin dikşîne.**

–Çi, çi dibêji?!

Muhsîn- Wisa çêbû. Belê, lê rastiya navê min: yani têbigihê...

Cahît- Belê, bellê gellek tiştan têdigihim. Bila neketayi zeftê!

**Hah-ha deng ji eywanê tên. Dengê linga tên. haya te jê be. Hişş bê deng be. Zû-zû dengê xwe neki!**

Muhsîn- Herê, herê. Hiih, h-iih.

**Qerdîyanek mîna rovî, mîna gurê keysbaz bi çav-sori ber bi Muhsîn va tê. Qerdiyanê din ji alî çepê ve xaçe-dar bi cih dike, di sipêre dîwar û diçe.**
**Qerdiyan pêl serê lingê xwe dike û tê ber deriyê Muhsîn.**

Qerdîyan- Ç'ye?! Çi dibe li vir? Ma pê nizanin ku işaret û axaftin qedexe ye! Dewarên kurê dewaran! Oho, oho ka lê birêne. Camêr çi zû raketiye. Hişt rabe ser xwe! Rab! Min bapîrên wi nizam çi kiro?

Muhsîn-
**Dike ku rabe; xwe di libitîne. Lê hew kêr tê û disa dikeve.**
– Tênagihêm rabim..

**Qerdîyan tên yek ji hêllek va wî di kişkişine, yê din ji aliki ve bi simên xwe lê dide. Pêl sing û ran û milên wî dike. Car-caran pihina li serê wi dixe.**

Qerdîyan- Ûla ibne xwe bi wêdrê negre. Berde! Negir! Destê xwe berde ha wisa ha. Çewaye! Bila qewdik li te hûr-hûr bibe. Ka berdidi, an bernadi he..!

**Wê gavê qerdîyanek û yuzbaşî ji eywanê ve ber bi wan va tên.**

Yuzbaşî- Rab, rabe piyan. Ûla ibne rabe! Ne niha em ê hev û du bibinin. Ka wi girêdin. Zû!!

Qerdîyan- Emrke qomitanêmin.

**Bi çêr û lêdanan dest û lingên Muhsîn li xaçedorê girê didin.**

– Ha, ha temam filitandina wi tune ye, işê wi temam.

Yuzbaşî- Ka ji nûh ve dest bi çîroka jiyana xwe bike..

Muhsîn- Mi pêşi çi dogit ew e!

Yuzbaşî- Rastiyê bêj e! Mina keran lêdanê nexwe ma çewa be. Tê disa dawikê hemû tiştan bêji. Ne ji Eleziz'ê, ji Batman'ê ji, pêşi hina mina te serhişki kirin. Lê, dawiyê mina bilbil xwendin. Oho! Em kela sebr'ê ne. Ka em ê mêzekin, tu yê çend ro li ber xwe bidi... Lêdana te çiqase.. Ka ev çine! Hê em ê te bibine serê çiyan û te li wê derê geberbikin. An ji li vê derê bikujin û bivên bavêjin nav mayinan tuxûba... Haya kesi pê nakeve! Ma bibihizin wê çibibe?! Tu tiştek ji nabe; lewra hemû tişt di destê min de ye; ne wilo?

**Bi gotinê va, çav li qerdîyan dişkîne û qerdiyan ji nişkava çixara vêxisti datine ser singa Muhsîn û çend hilma li çixarê dixe û bizota agirê çixarê geş dike. Çend bîn di nav de derbas dibe. Bizota çixarê li canê wî vedimre. Ji ber ku qerdiyan hêrsa xwe neşikandiye qotika çixarê li ser deqa birînê dive-tîne.**

–Ha wisa! Xuydana ser berde ha.. Oho çimêre lo! Deng ji dernaxe. Netenê nalin! Ev ne bese... Qêrin bike, hewar bike, xwe bavê dest û lingê me. Ûla pûşt qirin bike! Deng naki ne.. Tê hê gellek caran dirana li ser hev bijdini; emê bikin ku taqeta jidandina dirana ji nemine.. Ka bise hê ev çiye?! Bêje, zû!

Ji Hêlwan'ê ki nazdiki?

Muhsîn- Tu keseki.

Yuzbaşî- Ki, çi kari dike?

Muhsîn- Ni-zanim.

Yuzbaşî- Di kijan tevgeran de, ki hebûn?

**Muhsîn**- Ni-zanim.

**Yuzbaşî**- Te çi kir, ji dirav û çekan? Çeka ji ki di sitend? Li ku û te daye ki?

**Muhsîn**- Çekamin tune.

**Yuzbaşî**- Mustafa Aydin, Cemil Bayik û Dûran li kûne? Cihê wan kû dere?

**Muhsîn**- Naz nakim, pê nizanim.

**Yuzbaşî**- Talimatan ji ki distenda?

**Muhsîn**- Ji tu kesi.

**Yuzbaşî**- APO'ci li kijan gundan û li ku diminin? Ciyê wa...

**Muhsîn**- Nizanim.

**Yuzbaşî**- Gezgirê kurê bekçi naznaki? Kijan tevgera?

**Muhsîn**- Na!

**Yuzbaşî**- Te ki, li ku, û bi ki ra kuşti ye?

**Muhsîn**- Min kes nekuşti ye.

**Yuzbaşî**- Tê niha bibini... Haydê şêrê min, gurên minê sibatê.. ez we bibinim. Ha wisa ha.. Zikê wi bi piştê va bizeliqinin ha, ha. Li ser-hev..., de, de.. haha bikin ku sing lê bidewxe. Ha wisa! Çewa ye, bin, binê lê biçikinin, bila pûşt bin nestine. Lêde, lêde pişta seri bila bidarê ve mina bizmar biçike. Ha wisa wi ji mêrani bixe. Ha, ha bike ku zikê piçûk biteqe. Çewa!? hê ji hiş diçi ne... Zû wi vekin; bila mina telisê kayê terabe! Ha..., ha...

Erdê şil bikin!? Xwê lêkin! Hûrikên camê bi reşinin erdê. Zû zû..!

**Qerdîyan**- Emrke qomitanê min.

**Çend temeke av dirêjin erdê. Muhsîn di nav erda şil da dirêjkiri dimîne. Tînin xûya mina telaşa li erdê direşînin. Û hûrikên camê li serê bela dikin.**

**Muhsîn hildikşinin pîya. Çend caran ji destên wan dişemite, bê hiş li erdê pij dibe. Dîsa wî bi zorê hildidin û hê bi rewşa bê hişî li ser erdê dikişkişinin. Paniyê wi li erdê dixin ku hê bi hişê xwe va nayê. Pêşî şûjinê di ranê wi de li çend ciya dibin-tînin. Ku hê bê hişe: çend tenekê avê bi hijdî pê de dirêjin û dîsa wi dikişinin.**

**Yuzbaşî**- Ha, ha wisa bi hişê xwe were. Rab, rabe piya! Xwe li erdê navê, lingên xwe deyne erdê; rabe piya! Zû-zû lingên xwe li erdê'xe bileyze haydê!

Haydê gurên min wi li ser cemedê bireqsinin. Hişk bigrin, ha wisa ha, wi bi lotkinin.. Lingê wi li erdê bikişkişinin. Bila baş erdê bigre. Bine piyê wi paniya wi baş bigihe erdê.

**Herdû qerdîyan hişk ketine bin çengê wî, carbicar wî bi cotkanî li erdê didin. Car pêl lingê wî dikin, li erdê dibin piyê xwe da dibin-tînin. Û caran li dû xwe dikişînin.**

**Lingên Muhsîn ji xwînê sip-sor bûne. Ranê wî reş û sor bûye. Ji gellek qelşên hûrikê camê xwin ji ranê wî di herike xwarê.**

**Ku wî berdidin bê hemd li erdê pij dibe. Qerdîyan bi simên xwe çend derban li newq û serê wî dide. Yuzbaşî tê bi postala xwe pêl lingê wî dike. Di bin simê xwe da ci ecikîne. Bi kapika xwe, kefa destê wî li erdê demek dirêj di ecikîne. Ku ji nav destê wî xwîn tê, nav pêçîyên wî diqelişin, ji neynokên wî xwîn derdikevî. Çend derban pê ve gavek paşve diçe, û bi hêrs derbek li newqa wî dixe. Muhsîn bi alî dî ve diqelibe. Çend pihinan li ser-hev li laşê wî dide û:**

– Bêje, zû! Haydê ya ji tê mina kurrê bekçi seqet bimini, binê emê te bikujin..! Emê jop têxin te. Emê te ji mêrani bixinin; Nemêr bihêlin..! Heh tûûû.. Serekên we bi keç û jinan kêf dikin, wun we.. we dixapinin. Wun dibine qurban berxê qurbanê ji xwe tu.. tu keri ker! Boş betal lêdanê dixwi kero! Li Eleziz'ê hemû axivin, Şahin tenê liberxwe da; lê yên çavberdabûn ciyê wi, dibên ku Şahin axiviye! Haha bê canê, ger tu ne peyivi ji emê belakin bêjin peyiviye!! Ku tu nepeyvi ji ew ê bêjin ku axiviyi û ew ê mina destmaleki te bavêjin ser poxanê!

Ji ber xwe ger tu rastiyê nebê ji, ne peyivi, bi saxi ji vêderê dernakevi.. Tu ji destê me nafiliti! Te te teh . Çi heyf, çi heyf, çi bejn. Te heyf, mêze çi xorteki ye. Heyfa vê bejnê ter û ciwan! Te te bele sebeb tê seqet bimini. Ohoo, ji xwe rêxistin pelişi, belabû, me zinar Cemil, Dûran û Baki ji girti ye? Lawê min feyda neaxaftinê tune ye. Ji bele sebeb tê lêdan bixwi. Serhişk ninbe. Bi me dilxweş be, dilê xwe pak bike. Ger tu ali me biki emê ji ali te bikin.

**Qerdîyan**- Qasek-beri qasekê bipeyive, ku ji vi hali bifilitî, haydê zû!

**Yuzbaşî**- Haydê va em li benda tene ha. Zanibi ku em nekevirê sebrê ne, zû bi fikre..!

**Gava tu deng ji Muhsîn nabihîzin yek wî ji erdê radike, yê di li pişta wi siwar dibe. Wî dibintînin. Bi borîn û qêrînan sewtên ecêb derdixin. Car-bicar yuzbaşî lingê xwe dide berê ku wi bixine xwarê. Caran bi lingên xwe derbên dijwar li qorikê wî dixe: hira-hira wî ye.**

**Şoş, şoşş ûla pûşt xweş biçe! Deh-deha, ço-ço, şooşş.**

**Qasekê wî datînin navbera xwe û xwe li dora wî rêz dikin. Bi lêdanan mîna gokê wî di navberê xwe de dibin û tînin. Pûşt ku wî têr dibin tinin. Rakinê pê bi boksê dilizin. Muhsîn ku hew li ser çokan dimîne, mîna telîsekî bêcan li erdê pij dibe.**

**Ji ber tariya deri ji nişka va albayeki îşkenceci xuya dibe û dibêje:**

**Albay**- Dest ji Brahîm berdin! Bila bifikire!

**Yuzbaşî ber bi albay va diçe. Li ber guhên hev bi dizî hin tişt dipeyivin. Mîna herdûyan ji ray lê aniye serê xwe dihejînin. Yuzbaşî li qerdîyana difekire û çav ji wan re dişkîne.**

Yuzbaşi- Wi bavên hucra wi.

Qerdîyan- Emirke qomitanêmin.

**Qerxdiyanek cendekê Muhsîn bi erdê ve di kiş-kişîne dibe, yê di radike xaçe-darê û diçe. Ku di navde bihnek hê derbas nabe qerdîyanek tê hêdîka xwe li ber derîyê Muhsîn diteline û bi dizî bala xwe didê. Tu tişteki bal bikişîne ku nabîne hemû gefa dev tû dike û bi hêrs û gefan dibê:**

– Ha ev e ha! Xelata parvekarê welat ev e! Ev xelata parvekirinê ye. Çewa ye? Kominîstê parvekar, xayinê welat; xayin. Wun xayinên welatın ûla, ûla pûşt xwe nelibitine; bi tevize diciyê xwe de! Ûla pûşt bila qet dengê te nê! Ji êş û arînca hedara te namine ne? Ka bise ma qey ev çine?

Muhsîn- Av... avv... qurtek av!

Qerdîyan- Hele lê mêzeke. Ohoo şikir nake ku nemiriye. Hê çi dixwaze. Avnê, av ha... gû vexo.

**Muhsin bere-bere tê hişê xwe. Lêv û serçav werimine. Reş û sor mane. Cendek û serçavê wî ji xwîn û xwê deq-deqî bûye. Gava çavên xwe baş li ser xwe digerine li lingê xwe yê bi xwîn diponije. Dike ku tiliyên xwe bilibnitîne, ji êş û arîncê rûyê xwe tirş dike, ku nalîna wi tê.**

Qerdiyan- Hiş, hişt ibne. Ku werim ez ê gûyê xwe û vi têbixim devê te. Ranekeve.. rab! Razan û vezilandin qedexene, axaftin û wêrin qedexene. Xwestina tişt-miştji qedexe ye tamam! Çûna tuvaletê ji qedexe ye. Niha ku ez bêm te di xew da bi qefêlim, wê gavê ezê çi binim serê te. Ku te di xew da bigrim, diyamin bibe jinamin tu dîsa li nermijandinê yî! Va ez diçim, lê tu zanî...

**Muhsin ku binek wisa dimîne ji êş û arînca hedana wî nayê, ji ser zik xwe dizivirîne kêlekê,**



**Lê ji birînên canê xwe dîsa xwe hêdîka dirêj dike. Hêdîka xwe bi ser-heva dikişîne û demek dirêj di ponije. Hêdî-hêdî lêvên xwe dilibitine:**

Muhsin-Wun xwe dixapinin. Dibin işkence û eziyetên giran de jî vê amanc û bawerîyê bo min vegerandin tuneye. Bi van işkencan we amanc daniye ku dest ji amanc û bawerîya xwe bikişînim. Lê wun dixapin; li bawerîya xwe ez naxapim. Hemû işkence û lêdanên we li ber vê yekê wê pûç û betal bimînin. Wun hê derheqê min de tişt nizanin. Ev hal, pûç û bêhimî ya we dide nîşandanê.

Dibî ku ez serwext bim, bi zaneyi tevger vegrim. Taybetên tekoşin û partîyê her bilind bihelim û bê guman biparêzim. Ji jiyana xwe pêştır bigrım, zanibim ku hebûn li ser van yeka ye. Bê va pûç û betale. Ev yek ji min re amanc e; *Bijî Serxwebûn, Bimre Qolonyalîzm*. Ew ê ro yên mebin. Hatin ya me ye.

**Wê gavê deng ji eywanê tê, tepe-repa lingê qerdîyan û dengê derban hêdî-hêdî pirtir dibe. Ku qerdiyan ciyên girtiyan li hev û du diguhurinin. Bi çêr û lêdana girtîyekî nûh tînin dixine hucrê. Ser-merê wî hemî bi xwîn e. Di nav xwîn û birînan de wî li erdê dirêj dikin. Elî ji hucrê derdixin dibine yeka dîn.**

**Piştre ku qerdîyan diçin, bê dengiyeka giran çêdibe. Li eywanê ku tu şik namine, li cem hucra Muhsin hedana Cahit namîne. Mina ku xwe bi dîwêr ve zeliqandibe, hêdîka devê xwe li dîwar digre û bang dike.**

Cahit- Keko, ha keko.. çewa yî?

Muhsin- Başim.

Cahit- Ma lêdan pirr kirin?

Muhsin- Neyne hişê xwe. Li ser nese.

Cahit- Hayate jê hebî ku Şemdîn û Hesen girtine!

Muhsin- Na lo! Rast, ma rast e?!

Cahit- Hişş-hişşşt. Deng tê! Migo Şemdin li hucra Elî dimîne. Wî danîn wê. Bese dengê xwe nekı. Hişş, bise.

Li ber eywanê çend qerdiyan û yuzbaşi bê dengî, bi dizî ber bi hucrê wan ve tên. Hêdî-hêdî xwe di ber hucran de ditelînin û tên.

Ku Cahit têdigihê vê leystikê, hê ku ew negihane nêzî wan bo ku hemû hucre pê bihisin ji nişkava radibe ser linga û bi dengeki bilind *"Dikkat"* dikişîne.

**Yuzbaşi wana li ciyê xwe sar dibin ku leystika wan dipelişe. Bi awirên tûj û bi lez ber bi wî ve baz didin, tên.**

Yuzbaşi- Ula, ûla pûşt! Ma ki got ku "komit" bikişîne, ki he.. ki ji tere go...

Cahit- Wiha dizanim.

Yuzbaşi- Ka bise.. ez ê nişanê te bidim. Ro ji min û te re hene, ka tu bise..!

Yuzbaşi û qerdiyan hêdî-hêdî li ber hucra digerin, hebo-hebo li girtiyan difekirin, bi hûr-bijarî bala xwe didin wan. Û tên ber hucra Şemdîn disekinin; baş bala xwe didinê: tu deng jê nayê.

– Hişt, hişt çi dikî lan; ûla tu çi dikî! Ha wilo serê xwe rake ha! Ma tişt ji te dikin? Na, na camêr tu tişt ji te nakin. Tu tişt naynin serê te. Tu zila-

meki mezini wê çewa dest bavên te he.

**Li qerdîyan vedigere û jê re çav dişkine.**

– Ûla wun tişt ji vî nakin ne!? Wun tu tişt jê nekin ha herê! Car-bicar beqlewe-meqlewê bidinê; hay jê hebin erê..!

Migo ma tu dizani, mirov di jiyanê de pirr ji çi hizdike; çi şêrine? Ma tu dizani he!? Îhm.. mirov a pirr ji jina xwe hizdike. Ma tu ji jina xwe hiznaki? Sibê- disub... he.. ma tu naxwazi ku ji vê derêyi...? He! Ku bersivên min bidi, tê ji vê derbikevi. Tu ji dibini ku derketina vê derê gellek hêsane. A awha hima tiliya xwe bileyzini ji temam. Bi şeref sibê tu li dervayi. Her tişt xistine destê min, her tişt. Destê min dirêje. Mêze serekê dewletê çar siet xelat daye. Yek ji van sieta daye min. Têdigihiji mana vê çiye. Çiqas bi mane ye!? Bi rasti ji tu dişihubi zilameki bi aqil, camêreki baş. Mêze, ma zani ku ki te têxistiye vê derê!? Ki bû sebeb? Ki bu sebebê van yekan? Ki bu sebebê te?! Disa tu zani lê, ka li ser Hesen, Miheme, Qedri, Fatma, Gênco û li ser Eli hin bifikre.. Li ser vana baş bisekine: wê gavê disa ezê bêm û emê bipeyivin, herê!

**Yuzbaşî û qerdîyan bi rûkenî derdikevin; mina li dû xwe şik hiştibin di ber hucran de derbasdibin û diçin. Di nav de çend bîn derbasnave çawîşek bi çend porteqalan tê dikeve hucrê.**

**Çawiş-** Ka mêzeke ibne! Va ez bûme navbenciyê te. Haşte vana yuzbaşi şandiye.. ji te re şand. Silavên wî ji hene. Ûla pûşt ma tu çiqas mezin bûyi he! Ma wun çi peyivin! Te çi ji yuzbaşi re gotiye, te çi got, çi?

**Şemdîn-** Tu tiştek.

**Çawîş-**Êê, van porteqala çima şand wê hingê?

**Şemdîn-** Çi zanim ku çima şand.

**Çawîş-**Êêê wun bi hev zanin. Tu zani, ma ê min çi ye.

**Çawiş porteqalan li cem wî belav erdê dike, û dertê. Deri digre û di qulika deri de lê dinêre, ka wê çi bike, bi xwe, an naxwe. Bala xwe didê ku Şemdîn wa li hev kom kir û ani ber quncê deri de avête derva. Çawiş kulmên xwe lê dijdîne û hêrs dibe.**

– Ûla pûşt! Naxwi ne! Te nexwar ne! Çima te avête vê derê?! Yuzbaşiyê min şandibû...

**Şemdîn-** Ma wun bi vana qey zarûkan dixapinin...?

**Çawîş-** Wa, wa ka çi dibê, ka lê fekre. Ûla ibne ka bise.. ka tu tu bise..!

**Bi çêr û gefan porteqala li destê xwe kom dike û bi lez dertê û diçe. Çend qas di nav de ku derbasnabe yuzbaşî tê, li ber hucra wî disekine.**

**Yuzbaşi-** Çewa.., fikiri yi ne?

**Şemdîn-** Tu tişteki ku lê bi fikirim û bêjim tune ye.

**Yuzbaşi-** Van çenda berê, çend kes çi kirine, çine, çi zanin. Puff hemû gotin, axivin, mi wana dernexist mahekemê ji. Mina berxên bêşirmayi min wana rêkire mala wan. Şande cem dê û maliyê wan. Min tiliya xwe ji, fitekek ji li pozê wan neda.

Tu ji ji neçari dibi ku li rêya filitandina xwe bigeri. Li vê rêyê bigeri. Ji ber vê dibi ku tu ji mera hin tişt eşkere biki. Eli me biki. Oho va tu ji dibini ku jiyana vê derê gellek dijwar e. Nexasim ku jiyanek aza li derva heye. Of of, ûla tu ji xwe tu ahmeqi. Bêhiş û bê aqili. Piçek mêji di serê te de tune ye.

Li derva jiyan heye, jiyan. Mirov dilizin, dixwin, vedixwin, kêf dikin kêf. Hemû tiştên dilê xwe tinin, çi jiyan çi jiyan. Tu xwe ji vê jiyana xweş diki. Xwe dûr dihêli. Te tew, tew ma tu nabini niha ezê bigrim. Çavên min tiji bûn, dilê min li ser te dêşê. Ji xwe ez gellek dilşewatim. Dilêmin leqoke, dilê min van yekan nagre. Vê êşê ez ji te zêdetir dikşinim. Bi te di êşim. Bi rasti tu bi aqili, dibe tu hatibi xapandinê, hatibi fen û leystikên kesan. Ma ji ber vê ne heyfa te ye. Ji ber xapandineki ne heyfa te ye. Ku di vi hali da yi.

Tiştê em dixwazim bide me. Wê gavê ku te ji vê derê dernexim bila diyamin jina min be. Ku ez te ji vê dernexim. Bila jina min sercika te be. Mêz ne mirov pirtir ji jina xwe hizdike ne wilo? Ma hima bi serê xwe ji bêji "herê" ji mere bese û pirre ji. Hima ev tenê bese, hima ev işaret tenê. Haydê bese û pirre ji.

**Şemdîn-** Hewqas rûreş û rûşûşti nebin. Mirovê namûsiz bê şeref.

**Bi bersiva yuzbaşî nişka va xwe bi paş ve dikişine û reş û sor dimîne, qerdîyan tên mina sehên har û dev bi gilêz êriş dikinê.**

## TABLO III

**Bi hilm û gulma hewa paqij çend car dike ku kuxika xwe bisekinine hew zeft kir û li ser-hev û du ji kûr ve kuxiya ta li hev mina gopaleki xwar bû. Hêdî-hêdî çavên xwe rakir, li hawîrdorên xwe fekiri. Ji ronahîya rojê demeki dirêj çavên xwe li ser hev jidand. Bala xwe baş da der-holên xwe û bê bal kişandinê gavên xwe hêdi-hêdi ber bi quncê meydanê ve avêt, û car bi car bi zorê kuxka xwe dida seknandinê. Hate ber Muhsin û pala xwe da dîwar. Hêdî-hêdî li hawîrdorê xwe fekiri û peyvê domandin.**

**Muhsîn-** Heta neha ji hê ez eşkere nebû me. Lê, ev ji nê jibîr kirin ku eşkere bibe ji ne pêwist e. Lê dibi ku bala xwe ji vê yekê kêm nekim. Em kibin, çi kes bibin bila bin, di vê tekoşina bê emsal de, taybetên parti û tekoşinê gere zerar nebinin. Ev ji hemû yekan pêştir e.

Dibî ku qet nav nên danê. Dibî ku, em têkiliyên xwe û derva bi hûr-bijari biparêzin, bi sitrinin. Veşari bigrin, ta têkiliyên hundir ji. Dibi ku haya me ji van hebe.

**Cahît-** Rast e. Gotina van yekan nehewce ye.

**Muhsîn**- Disa ji nên jibir kirin, sistiya van çenebe, ji ber gellek tiştan ev hewce ne. Şahino yê xwe spar ji guman kir ku bi xayintiya xwe ew ê bifilite. Ji destê qolonyalista Tirk ew ê bifilite.

**Cahît**- Qolonyalist ji, xayina mina destmaleki bikartinin û davêjin ser sergo.

**Muhsîn**- Mirovê bê xiret dikare sir'ên partiyê û navan bide û daye ji.

**Cahît**- Mirovê bê namûs, bê şeref. Di diroka şoreş û dinê de tiştê wiha hene û kesên wilo derketine. Nexasim li welateki ku hemû rengê xwesipariyê mina pincek xwe li jiyana girtibe û gerineka xayintiyê ku xwe di nav civakê de kemilandiye, tiştê wiha ew ê derbikevin. Kesê wiha ji ew ê derbikevin. Lê ew namûsiz...

**Muhsîn**- Îşkence û zerpên girtixanê hê girantir dikin. Xuya ye ku li vêderê yek keseki serwext nahêlin. Naxwazin yek keseki serwext bimine. Li hember tiştên wê bên û li diji van yekan dibi ku hin tişt bêne kirinê. Mina xûya dibi, têkiliyên nav hevalan nerme û bi hemû rengan xwe nasitirine. Lehev ne civandiye. Têkili sistin. Di demeke kurt de li vê hêllê bibe sebebên çi yekan ji, dibi ku bi qawişên din re têkili lidarbênxistin û tevgersaziya nav qawişa em bikemilinin. Ku girtixane bibin nav a berxwedana.

**Cahît**- Bellê. Li vê derê ji tevgersazi dara hebûnê ye û ev tişteki çarenini ye.

**Muhsîn**- Dixwazin têkili û yekitiya hevalan ji hev bipelişinin. Têkili û yekitiya nav hevala dibi ku ji nûh ve bêne kemilandinê. Têgihiştina van yekan xurttir bibe. Ya din ji, di seri de li hember hoyên girtixanê, bê berxwedan nayê jiyandinê. Bala me bi girani li ser vê yekê be.

**Cahît**- Ji berxwedanê pêştir rêyek tune ye.

**Muhsîn**- Bellê. Mina tevgera me di bişkifine û daxûyan dike. Ji pêşveçûnan xûyan dibe ku dewleta qolonyalista Tirk, boy ku hebûna xwe bidomine bi hevkariya CÎA ber bi diktatoriyeka faşist xwe bi kartine. Tenê ev rê li pêş wê ma ye. Lê rehên wê yê hatine birine, tu quwet nikare wan jindar bike.

**Cahît**- Ji bo hevalên girti li derva dibi ku xebat bêne kirinê. Avukat bên girtin. Niha derxistina mahkemê rawestandin e. Lê wilo xûyane ku ew ê di demeki nêz de dawayên gurubi dest pê bivin. Li hember vê bo parastina siyasi, bi hevalan re dibi ku têkili bê daninê. Wê gavê ew ê karê me çibe? Em ê karibin çi bikin? Bersiva van pirsa bê daninê. Hevkariya bersiva çêbibe. Wê hingê ew ê haya van hevala ji jê hebe û ew ê xwe li ser vê yekê bikar binin. Xebatên xwe bikemilinin.

Ji bo revê: gere em bêne ser reva vê derê. Bi min be, bi ditina min, derva derketina te yi derva gellek giring e. Hetta rêyeka çarenine.

**Muhsîn**- Lê hemû der mina qutiyê ye.

**Cahît**- Rêyeka wiha mirov biceribine...

**Muhsîn**- Çewa?

**Cahît**- Bi hevkariyan hevalan li hember karbidestên girtixanê propaxandek wiha çêbibe ku; selikên poxanê piçûkin. Hûrik-mûrik jê dikevin xwarê. Bila selikên mezin bidne me...

**Muhsîn**- Êê. Hiimm..

**Cahît**- Tu ji dizani ku selikê poxanê girtî dibin û davên erebê. Û eskerên bêçek, an ji bêçekên hêsan dibin û li ciyên dûr dirijinin. Ji me ra ev dimine ku em te di selikê de bi cih bikin û vê bi partiyê bidne zanandin. Roj, cih, siet û parolê ji ji wan re emê bêjin.

Bi vi awahi çara felatiyê zêde dibe. Belki ev ji bo çend kesan zor be; lê beri her yekan dibi ku tu ji vê derê derbikevi.

**Muhsîn**- Mêze. Hişş, wa faşistê namûsiz, qerdiyanê işkenceci tê. Hişşe û dengê xwe neke.

**Qerdiyan bi vi ali-wi ali ve diheje, dilitime. Sing-mingê wi vekirine. Çavê wi mina ji hêlinên xwe derketibin, dor wan reş bûne, çav lê sor bûye. Heeeyt, heeyt ki bi çavreşi ji aliki ve li dewleta min, li dewleta Tirk difekire.. He ki, heyt ki ûlannn.**

## TABLO IV

**Qawişeki tevlihev cikrim sekini ye. Li gotebêjê guhdar dikin. Ji gellek ditin û tevgeran kesan li hev civandine. Yên xwesipar, xain, û yên dudil û nermok hemû li qawişê civandine.**

**Biranîna pêncisaliya Atatirk e. Hemû der-doran bi fotgrafên Atatirk xemilandine. Nivis, wêne hundir tiji kirine. Fotgrafê Atatirk li singê xwe dane û ji kûr ve bala xwe dane gotêr.**

**Astegmen**- Îro 10 ê Mijdarê ye. Siet ji neha pênc dibuhure. Îro roja Atatirk ku çûye gorbexşiyê. Jiyan, dirok, gera dinê sekini, dil sekinin.

Ew qehremaneki bê emsal bû. Welatê me ji dijmin paqij kir. Wan avête bahrê. Ku dijminan ji çar ali ve xistibûn dest. Wi, wi qehremanê mezin welatê me rizgar kir û daye destên me.

Em mêrxas û lawên atayên xwe ne. Wun dizanin ku wi çi digo? Digot ku **"Tirk bedelê dinyayê ye"**.

Wa, wa! Hey, hey! Îhh.., çima, çima dikeni ûla. Ûla pûşt çima dikeni? Çima keniyayi pûşt, çima?

**Mistefa**- Nekeniya me.

**Astegmen**- Ka bis ez werim, ka, ka ha he çima keniya yi? He çima...

Çima ûla ibne; çima dikeni he? Li xweşiya te diçe ne? Te geber bikim. Ûla ez ê te bikujim. Haş te hah, wiha bikevi ber sola min. Hah, hah, pûşt wisa li erdê pij bibe ku hişê te bê serê te, ne ez ê te bi sêdarê ve daleqinim. Çewa ha haa, bêhiş keti ne. Ezê wi hişi ji derbixim ka bise, ka bise...

Û wi li hember dijminên ku amanedikirin welatê me perçekin şerkir mina şêra, şer kir mina

pilingan. Wî şerkir. Ku em ji mêrxas û lawên wî bin em, welatên xwe naxin destên tu kesan û bi tu kesan nadin parvekirinê û em...

**Osman-** Qomitanêm, qom..., qomtanêminn...

**Astegmen-** Hişşt, hişş, çi, çi ye lawo?

**Osman-** Ûff, ûff qomitanêmin. Ûff mîza mi qo.. qomitanê mi...

**Astegmen-** Hişt, ibne! Li ciyê xwe bimine. Ez bêm ez ê bi devê te de bikim. Li ciyê xwe be. Kes ne libite. Li hawîrdorên xwe nenêrin. Cik tim! Hişt, hişt yek ji we tişt bike... yek tiştek bêje... diyamin jina min be ez ê we di pelekan de derbaskim...

Û em ê herdem li ser yên welatê me ji hev parvedikin mîna gurzan dakevin. Ata yê me rihet rakev(!) Em mêrxas û lawê qewma mezin û em bi navın. Bav û kalên me ji dinê re meydan xwendine. Ji Asiya ta Ewrûp'ê hetta Afrîka, herder yê me bû.

Di sala 1919an de Ata yê me derkete Samsûn'ê. Ala Tirk bilind kir. Li cebha şerq û xerbê şerkir. Û wana avête bahrê. Serê sereke serhildanên hundir û serhildana pelişand. Li ber kominîzmê nermoke nebû. Fesal nedaye kominîzmê. Û gotiye **"li her derê bê ditinê serê kominizmê hûr-hûr bikin"** û 1922an de cumhûriyetê ava kir. Vî welatî û vî milletî bêveqetandin da destê me. Û em ê emaneta wî biparêzin. Tu netirse Ata yê me.

Heyy şişşt ka tu bêje: Tu tu porsipiçolko, ka bêje navê dîya Ata yê me çibû?

**Apê Elî-** Wî wî, ev çiye lawo!? Ew ji ku derket lawo, tiştê wisa min nebihîst, û kes negotiye. Welle qomitanêm bilmirem.

*(Dûmahîk heye)*

## "MA BILA MIRIN BI ŞEREF BE, LÊ SED Û HEZAR CAR BE!"

## –2–

*Em vî qunci, bi serpêhatinên yên ku taybet jiyana mirovî, welathizî, gelêrî, şoreşgerî, xwebawerî, rizgarî û azadîxwazî, berxwedan û biryarvanî hwd. didin zanandinê. Û bi biraninên ku di jiyanên me de quncên xas digrin bi hevre binexşinin. Bikne quncê jiyana xwe. Ewê ev rûpel roleki pêwist bilize. Emê bûyer û biraninan bi pergalên çêbûnî lê bi çîroki rêz bikin û manekirin û têgihiştina bûyer û biranina bi sipêrin xwendevanên hêja û baldar.*

* * *

Tepe-repa wan ji salonê qet kêm ne bû. Li her derên salonê borîn û qarîn dihatin. Şeqin-reqina zincir û jopan bû. Ge li wur, ge li hêlla di, dengê nalîn û sewtên girtiyan di nav tepe-rep û şeqin-reqinan de dihate bihîstin. Sar mam! Xweydaneka cemidî ta di serê neynokên min de avêt. Ji nişka va ricifîm. Mîna mûkên ser min tûj mabin, binek wilo mam. Xweydan li min cemidî. Mîna birînên min ji nûh ve vebibin, tîrêjan li ser-hev davêtin.»

Tepe-rep; bere-bere nêzik bû. Bê hemd, damarên cenik û pelegoşka min li ser-hev lê dan. Rewtelên refa işkencê li pêş min sekinîn. Bi awirên tûj, dar, jop û zincirên xwe ta xwarê, bişkofên singê xwe vekiribûn. Mîna gurên sebatê, serên xwe li min dirêjkiribûn. Neserek, ne didu û ne sisê ne lingek ne çar û ne pênc û şeş; ne destek, ne jop û ne zincîrek.

Darên destên xwe, zincîrên pêçayî li qevdên destê xwe zevt girtî bûn. Zincîrê hêdî-hêdî li ranê xwe dide, bi awiran li min mêze dikin. Yek him benîştê xwe dicû, him bi dexesî mêze dike û cop li kefa destê xwe dide...

Bi awirên tûj notirvan hate ber min sekinî. **"Ûla ibne tu zani îro çi ye? Ji ter dibêm lan! Îro çi ye? Bêje! Îro çi bû ye? Ûla pûşt bersiva min bide...! Ûla qûnde, Atatirk mirî ye ne! He, na! Ew nemirî ye. Îro 10 ê Mijdarê ye. Ka bêj, çi bû ye? Cihinimi ye ne?! Na ew gorbexş bû, dilşa bû."**

Disa dar li min hejand û hêrsa xwe vereşiya; **"ka tu bêj. Tu bêje ibne"**. Wî çend car li ser-hev got; min dengê xwe nekir. Yên di ji ber bi min hatin, ku deng ji qoridorê hat, sekinîn û gavek ji min dûr man. Û bala xwe dane milê rastê.

Dengê kûçikê hat. Xwe rastkirin. Bi dengên lingan ve serekên refê işkencê hatin li pêş min sekinîn. Disa bû hewtîna kûçikê, wan ji xwe rêz kirin. Ji nêz borîna yuzbaşî Esat Oktay Yildiran, bi qoridorê ket;

**"Ezê wilo lê bikim ku; ezê wisa binim serî ku; ezê mîna keran pê bidim gotinê... Çewa, çewa nabêje?!"** Bi deng û kûçikê xwe 'CO' va li pêş min sekinî. 'CO' xwe li çimikên min bir û anî; wî werisê 'CO' bi hêlla xwe va kişand. Rûkên xwe tirş kir, serê xwe tewand û tûj-tûj li min fekirî. Lêva xwe tewand, gelpikên xwe tije kir; bi kef û tûka dev re, borîn pê ket; **"Heee ma tu min nasnaki?! He, tu min qet nasnakî? Xwe dirêji nav wê kefê bike... bikeve navê...! Xwe pê bişo, haydê zû! Ji gemara gû û mîzê tam bik, zû!"**

Min qet dengê xwe nekir. Destê xwe avêt pişt xwe, xwe qub kir; singa xwe werimand. Mîna kûçkê har û dev bi gilêz, bi çav-sorî mêze kir, sekinî û di ber min de çû-hat. Rûkê xwe talo-tirşo kir. gavek pêş va hat û go:**"tu jina xwe nadî min? heee!"** Min xwe civand serwext kir ku wê, îro dawiya işkence û lêdanên mehan bi kuştina neha bine qeysa dawîkê. Mîna mêşên kewarê gume-guma serê min li goh û textê enî ya min da. Ma bila mirin bi şeref be, lê sed û hezar caran be!

Rabûm serxwe û min li nava çavên wî rihênt û got: *«malî ya min, durist û bi namûs e; bi xîret e; zane namûs çi ye. Lê tu; bi şev û ro, 24 seetan işkence û lêdanê dikî* 'jiyana' *te ev dere. Lê, jina te di paşila ki de ye?»* Min xwe li benda derbên dijwar hişt ku refa işkencê ji xwe libitand. Lê ji bini va qet tewr nedanî. Qermûçekên eniya wî vebûn, reş û sor bû, sist ma. Milên wî ber de ketin. Binek bê deng sekinî û ji nişka va dest bi Atatirkçitî, Tirk'tî, yekwelatî û netewaî kir. Di nav peyvê de disa ji nişka va borîya; **"çima dikenî?"** min deng nekir û nekeniyabûm. Pêşî min bersiv ji nedî. **"Bersîv bide, bersiva min bide!"** Min ji jêra, hatina devê xwe got: *«Li neçarîya te dikenim.»* Zûq ma, sar bû û hevsarê 'CO' ji nişka va kişand û ji lez çû.

# ZMAN Û WÊJE YA NİVÎSÎ

HÊL û zaneyên zman, derheqa ku zmanê Kurdî, şaxek ji qurna zmanê Îndû-Ewrûpî ye wekhev difikirin.

Di alî nivisandina zmanê Kurdî de demeke dirêj elifbaya Ereban karhatî ye. Dema Urartûyan, Mittanî û Kassitan (ji berî mîladî 1800 ta berî mîladî 610an ev dem cih digre) ku nivîsa Latînî tê ditin û ji Latînî kevintire gelê Kurd ji kitabeyan bi zmanê armeens'î nivîsandiye. Zmanê li kitabeyan û li destikên xeritan dinê nexşandiye ne zmanê ku dinav gel de tê xebitandinê ye. Di diroka mirovî de çewan felsefe, ilm û sin'et bê têgihiştina gel bi destên aristokrat û girseke piçûk hatibe xebitandin, û ev yekan dûrî gel mabin, mina ku malê van girsan be, ev ji bo rojava Anadol'ê, Kurdistan û bo Rojhelata-Navîn ji wiha ye. Gelên ji qurnê salan ve hebûn domandine, berî mîladî, ji sedsala 10an ve nivîsa zmanê armeens'î xebitandine. (Dibî ku şaşî ji bo vê çenebe ku; têkiliya zmanê armeens û ya zmanê Ermeniya tune ye. Wekhev nêyî ditin)

Ku Încîl despêk û bingeha mîladî tê ditin nivîsandina Încîlê ji bi armeensî pêk tê; di danezanên kevnare, destikên qewartî û pûtan de nayê ditinê. Lewra ev yek ji bo netewên dinê ji wiha ye. Hê di dawiya salan de nivîsa Latînî serdest ketiye. Nivîsa zmanê armeensî li paş maye.

Her weke Roman û Grekî netewên cuda ne ji, eserên xwe yê zangerî bi Latînî nivîsandine pêvajoya karanîna zmanê gelêrî li ser danezanan piştî Gûtiyan, Kassitan, Mittanî û Ûrartûyan bûye barê Medan. Di danezanên dema Medan de pêkhatine, yên ku li ber destin hin danezanên Kurmancî di kitaba general Îhsan Nurî *"Koka Kurdan"* de daxûyan bûne. Piştî vê kifşkirina kurte-birî, ger em vegerin ser bingehê pirsgirêka xwe, ew ê bê yî ditin ku, bi elifbaya Latînî destpêkirina nivîsandina Kurdî ji sedsaliya bistan ve destpê bû. Li ser vê elifbayê edilandina zmanê Kurdî li Sûrî'yê di 15 Gûlan'ê 1932an de bûye paya kowara "Hewar"ê.

Emir Celaleddin û brayê xwe Kamûran Elî Demirxan li ser sê amanca; zindekirina zmanê Kurdî, pêşxistina zman û zanistiya zmanê Kurdî û bi amanca afirandina wêjeya gelî ji bo hêzkirina taybetên civata Kurd, xebatan kirine.

Kowara ku derdixistin "Hewar" bi Fransizî û Kurdî dixemilandin. Di nav nivîskaran de ji ronakbirên Kurdê Sûrî, yê Îraq û yên Urdunê hebûn. Profesor Hevînd Serî, Elî Seydo, Doktor Ehmed Nafiz û Cigerxwînê navdar û Evdilxalik Eşirî, Qedrican, Mustafa Ehmed Botî hwd. ji nivîskarê "Hewar"ê bûn.

Him di pêkanîna "Hewar"ê de, him salên dawî de di kitaba Kemal Badilli *"Gramera Kurmancî"* de, him ji di ferhenga Yusuf Ziya Paşa *"Kurmancî-Tirkî"* de elifbaya Latînî hatiye karanînê. Di van eseran de elifbaya Kurdî 31 herf kifş bûye.

Li welatên biyane, gramera Kurdî ji demên berê ve hatiye weşandinê. Neqla ewilî di sala 1787an de Gramera Kurdî li Roma'yê bi Îtalyanî çapbûye. Nivîskarê wê, misyonerekê katolik e ku 18 salan li Diyarbekir jiyan domandî ye. Navê wî, MAURÎZÎO GARZANÎ ye. Di hêla filolojî de ji vî nivîskarî re bavê **Kurdolojî** tê gotin.

Sala 1808a esera KLAPROUTH *"Xebatên Ser Kurmancî"* pêş me dibe. Disa ev nivîskar sala 1814a, fihristek *"Gotinên Kurmancî"* derdixe.

Mina em ji B. Nikitin hîndibin ku di destpêka sedsaliya 18an de HERBELOT, jiyana gelê Kurd ya gundîtî li hev komkiriye. Û kronigetek pêk aniye. Ku hin misyonerên Îngilîzan têdigihên vê yekê çend nimûnên kronigê bi dest xwe dixin. Lê, dema General ŞÛŞTELEN bajarê Erbîlê sala 1828a ya têdixe destê xwe kitapxana Safewiyan û eserên Kurda di nav de dibe SAİNT PETESBOURG'ê. Di nava van kitabeyan de nimûneka ŞEREFNAMÊ ku di 1599an de bi destê nivîskarê wê disa di dest de derbasbûye û nifşa wî li bin heye û krogin ji di nav de ye.

Îro van eseran bi hemû zmanên nav dane çapbûne. Û hêlên zane ji gellek aliyan ve van eseran vejandine. Lê, mina me li jorê got: Îro ev danezanan li hêviya balkêş û benda zana û ronakbirên Kurda mane. Ev kroniga bê emsal jiyana gundîtî gellek dewlemend civandiye. Esereka gel afirandiye. Û îro ev ji bo derbikeve rûyê rojê bendewarê rizgarvanê xwe dimîne.

Li ser ŞEREFNAMÊ, nivîskarên Rûsî bala xwe jê kêm nekirine û bi balgiranî li serê sekinîne. Em li vê binavê wî serfiraz dibin, dostê gelê Kurd VELÎAMÎNOV-ZERNOV vê eserê weşandiye. Endamê akademiyê F. CHARMOY ji, hemû jiyana xwe li vê yekê girtiye. Û ŞEREFNAME çar cildî va wergera Fransizî çapkirî ye. Lewra wê hengamê zmanê Fransî zmanekê navnetewî bû. Ev esera bi Fransizî çap bû ji alî hemû ronakbiran ve hat bişkavftinê. Ku, ronakbirekê biyane, hemû jiyana xwe daye ser wêje û çanda Kurdan, xebata wî ya bê emsal ji hemû xort û ronakbirên Kurdan re nîşane. Ku ev kes bixwe ne Kurd e ji.

Endamê Akademiya zangêra Rûsî, M. Lerch bi girtiyên Kurdê Rûsiya ve dixebite û di dirokê de neqla ewilî, bellê di dirokê de cara yekemîn rexnegira eserên Kurdî pêk tîne. Pişt vê yekê ve bişkavftin û vejandinên DÎTTEL û BEREZÎN li dû hev berdewam dibin. Lê, di vî alî de danezan û neticên serfirazî pê bên yên bi nîşan A. LOZKO û JABA (herdû konsolosan li Kurdistan'ê wezîfe pêk anîne.) anîne meydanê. Ji vana Jaba; xebat û danezanên afirandiye hewqas giranbûha û birûmetin ku navê wî dibî bi herfên zêrîn bêyî nivîsandinê û li dereca B. Nikitîn bê ditinê. Û mina B. NÎKÎTÎN ji hişê xort û xwendevanên Kurdan dernê. Ger em bêjin ji ber çi? Jaba, bi hevkariya refek ronakbirên Kurdan *"Bijarteyên Nivîskarê Klasîka Kurda"*, *"Ferhenga Kurdî-Fransî"* kitaba axaftinê *"Fransî-Rûsî û Kurdî"* bikar anî ye (1848-1866). Di vê dema ku biyaneyên idialist li çand û zmanê Kurdî xwedî derdikevin, hêzên Tirk ji wêje û zmanê Kurdî re mezel vedikin!

Piştî sala 1870 Prof. EGHİAZARON li hêla Erivan'ê nav gelê Kurd, xebata Kurdolojî pêk tîne. (Ji sala 1870'yî ta 1982an ji xeynî Ziyadettin Paşa tu kesê zangêra Tirk li ser Kurdolojî Xebat nekiribe) Disa B. NÎKÎTÎN dibêje; *"Di vejandina danezanên Kurdan de xebat û graniya Rûsiyan heye"*. Ji ber, ronakbirên welatên dijî ray li vê rastiyê tînin, ji zangêrên Elman'a, JÛSTÎ, PRYM, SOLÎN û NAKAS'ê Avusturya nivîsên xwe ji bo weşandinê şandine akademiya zangera Rûsiya.

Ji ber dor hatiye serê, em dixwazin vê yekê kifş bikin ku; di serîde akademiya zangêra Rusya xebata ronakbir û balkêşên wayên filologê bi pezn û rûmetî bên biranin. Rûmet û biranîna karê wan ji me ra deynê mi-

rovî ye. Ev netîce, baweriya zangêri dide nîşandanê.

Kitaba HOUTUM-SCHİNDLER *"Alikariya Xezna Gotinên Kurdî"* sala 1848-1888 li Leipzig'ê hatziye weşandinê.

Zangêrên Elman; M. OSCAR MANN, li ser wêje û zmanê Kurdî çar salan xebitî ye. (Ku her xortekê Kurd ji her alî ve 4 salên xwe bide gel û welat wê welat xelas bibe!)

JARDÎN û DRÎVER'ê İngiliz piştî şerê cihanê yekemin, xebatên xwe yê vî alî daxûyanê hêlên zangeri kirine. Ji xeynî vana sala 1913a xebatên SOANE li London *"Gramera Kurdî"* dertê pêş me.

Demên berê ji ber ku, ronakbirên Rûsya bi Fransî nivîs û weşanan karanîne, sedemê van yekan ronakbirên Fransa, li ser vî alî xebatan kirine. BEİDAR PAUL sala 1925 li Paris'ê *"Gramera Kurdî"* derdixe.

Mîna bi daxûyanê ji kifş dibe xebata xwe zmanê Kurdî piştî salê 1926an li hemû hêllên Kurdistan'ê fireh dibe û bi giranî tê domandinê. Lewra, van xebat û nivîskarên me daxûyan kir, xebatên wan li ser derdorê hêllek Kurdistan'ê pêkhatî ye. Çara xebatên li ser hemû hêlên Kurdistan'ê bi dest neketî ye. Di nav van xebat û nivîsên li ser hêllan daxûyan bûne de, xebata MAKAS HOGO *"Zmanê Kurdî de Zarê Mêrdînê"* sala 1924an li Leningrad'ê çapbûye û ev, di nav xebatên hêllan de qunceki bi rûmet dadigre. Dîsa vî nivîskarî, sala 1900î xebatên xwe yê vî alî bi navê *"Bi Zarê Diyarbekir Zmanê Kurdî"* li bajarê Elmanya HEİDELBERG'ê weşandî ye.

Ji xeynî Turkyê îro li hemû navçeyên çand û hêlên cihanê şaxên Kurdoloji sazbûne. Li Moskova, Leningrad û Erivanê, li Paris, Viyana, Berlîn, Stockholm, Londra û li Roma şaxên Kurdoloji xebatên xwe didominin.

Ji sedemê nivîsareka kurte-bire xebatên li ser zmanê Kurdî bi destên ronakbirên Kurd û biyanan berê û piştî şerê cihan a yekemin ku li welatên islam, İran, Misir, İraq û bi hindikî li Tirkiyê pêkhatine, em li vê van xebatan rêznakin. Xebatên li van welatan bi destên kedkarên Kurdan di bin zilm û zerpên giran de bi veşarî pêk hatine. Û ji ber xebata wêje, çand û zamanê Kurdî, girtin çêbûne û girtiyê vî alî di zindanan de şehîd ketine. Em wan bi serfirazî bir tînin.

Dîsa bi kêmasînan be jî ger em li ser vê rewşa dijwar bisekinin, aşkere ye, berî ku cumhûriyeta Tirkiyê saz bibe, ji sedsalan ve gelê Kurd û zmanê Kurda hebû û heye. Ger ne wiha bûna, ev kesên biyanan, li ser tiştekê tune bi salan xebatan nedikirin. Û mîna hin kesan hemû jiyana xwe nedidane serê. Ger gelê Kurd, wêje û zmanê Kurd, çand û sin'eta Kurdan tunebûne, hewqas qetliam, zerp û işkence, ew ê li hember kî û ew ê ji bo çi pêk bihatina? Çi sedem wê ji wan re bihatana dîtinê?

Emperyalîst û zevtkarên kemalîst û hêza domdarê wa yê îroyî a faşîst li Kurdistan'a Bakûr; nivîsandina zmanê Kurdî, weşanên Kurdî, qedexekirine û ev qedexekirin tenê ji bo zmanê Kurdî ye. Lewra îro li Tirkiye, bi Fransizî, İngilizî, Rûmî, Ermenî û bi zmanê Arnawûtî rojname tên weşandinê. Van gel û kêm netewanan li dibistanên xwe dixwînin. Lê, gelê Kurd, ji van yekan dûre. Dibi bê hişê mirovan ku, burjuvayê Tirk dema ray li weşanan tîne, ji ber ku kêri çand û zmanên Tirkî tên lohmanê. Lê, ji bo gelê Kurd ev rê ji girtî ye. Lewra ji demên buhurî ve û dema nû-buhurî nimûnên vê yekê gellek hatine dîtinê.

Ji bo karanîna zmanê Kurdî, hevalên me yê şoreşger bîst sal berê, kovarek Kurdî derdixistin. Bi zmanê Kurdî jiyana M. Kemal nivîsandin. Lê, xelata wê bû; 18 meh heps û 6 meh ji nefî..! Mîna xûyane ku ji mafên sercestên Tirkran rêya karanîna zmanê Kurdî ji tune ye. Ray li vê yekê ji naynin. Pêkanîna weşanên bi zmanê Kurdî, dibe sedemê işkenca û hepsa salan.

B. NÎKÎTÎN; li hember vê mîna serihilde wiha dibêje; *"bi zmanê dêmakî li Kurdistan'ê pêkanîna zangerî û weşanan, sitara taybetên netewî û ji bo rêvekirin pêşveçûna gel ra ev rêyên çarenînin".*

Dijminê mirovanî Hitler jî li welatên zevftkir; peyvandina zmanê gel qedexe nekir û ji van netewên jêrdest karê pêşxistina zman û çandê ne sitendibû. Ev rastîyeka gran e û dide nîşandanê ku kemalîsta, Hitler bi paş hiştine û ji Hitler paştir û faşîsttirin. Ev wiha ye. Lê, pêşveçûna dîrokê û hêza afirandina netewan nayê seknandin. Li hember van hemû destik pûç û betal in. Ji dê, sitendina mafê welîdandinê çibe, sitendina mafê sin'et û zman, wêje û çanda gel ji ew e.

Ji çîna serdestê feodalê Osmaniya ve ta dema kemalîstan, hemû karbidestên dewleta Tirk, tunekirina netewa pêşî bi amanca wundakirina zmanê Kurdî dane pêşiya xwe.

Hember şoreşgerên Kurdan di mahkemên lihev-hatî û li mahkemên eskerî yên nemirovî de sala 1972an û sawciyên eskerîyê sala 1982a de sawciyên eskerî û sawciyên rûniştinê berî sitendina biryarê, eşkere tunehiya Kurdan diparêzin û ji bo zmanê Kurda idia zmanê lihev-hatî di eywanên mahkeman de daxûyan dikin.

Ji bo vê pirsgirêkê salê 70yî bersiva şoreşgerên Kurdan dane ku em binin birê, daxûyanên wana çewa li hev-hatîye wê eşkeretir bibe.

Universita Leningrad Enstituya Kurdoloji ferhengeka 35 hezar gotinî bi Kurdî-Rûsî derxistî ye.

Universita Sorbon dibistana bilinda enstituya Kurdoloji zmanê rojhilatê jindare ferhengeka 75 hezar gotinî bi Kurdî derxistî ye. Lê, ji salan ve ye ku sazgeha zmanê Tirkî ji sala 1969an ve bi 29 hezar gotinan ferhengek bi Tirkî derxistî ye. Ji van 29 hezar gotinan, 3 hezarên bi Tirkî, 6 hezaran yên edilandî û gotinên biyane, 20 hezarê wan gotinan hemû gotinên biyana ne. Lewra; bi vejandina sazûmana zmanê Tirkî ev yek li ser ferhengê derketine meydanê ku;

Ji 1145 gotinên herfa (A) yê tenê, 328 gotin Tirkî ne. 346 gotin bi Erebî, 154 Yunanî, 122 Fransî û 102 gotin ji bi Farisî ne.

Ji 1090 gotinên herfa (H) yê tenê, 184 gotin bi Tirkî ne, 565 gotin bi Erebî, 192 gotin bi Fransî, 82 gotin ji bi Yunanî ne.

Ji 31 gotinên herfa (J), yek gotinek jî bi Tirkî nîne.

Ji 2214 gotinên herfa (M), 1514 gotin bi Erebî, 174 gotin bi Yunanî, 134 gotin bi Fransî, 121 gotin bi Farisî ne. Tenê 117 gotin bi Tirkî ne, gotinên din bi Latînî, İngilizî, İspanyolî û İbranî ne.

Ji 365 gotinên (Z), tenê 52 gotin bi Tirkî ne. 201 gotin bi Erebî, 90 gotin bi Farisî, 12 gotin bi Yunanî, 5 bi Latînî, yek Rûsî, didu bi Ermenî û yek bi Fransizî ye.

Ji zmanê Kurdî gellek gotin tevî zmanê Tirkî bûne. Mîna: çerçeve, çapraz, sehpa, hoşaf, pilav, peynir, turşû, dûman, serkeş, herkes, çarşaf,

manda, sarhoş, zincir, û hê bi sedan gotinên din. Dawî şoreşgerên Kurdan vê nimûna xwarê delîl didin nişandanê.

TC
Diyarbakır, Siirt illeri
Sıkıyönetim Komutanlığı
Askeri Mahkemesi -
Askeri Savcılığı
Diyarbakır: Evrak No; Esas No;
Karar No;

Gotina serî de ji gotinên "Turkiye, Sıkıyönetim, Savcılığı, illeri" pêştir tu gotinên bi Tirkî tunene. Lê, nivîsa jorê ne ji çar gotinan çêbû ye. 16 gotin e.

Yani: "Cumhuriyet, askeri, evrak, mahkeme, esas, karar" bi Erebî ne, "Diyarbakır (Diyarê Bekir)" bi Farisî, "Siirt (Sêrt) bi Kurdî û "Komutan û No" ji bi Fransizî ne.

Ku "Sıkıyönetim", "Savcılık" û gotina "il" ji hêlla sazûmana zmanê Tirk ve hatine edilandinê. Ta demên berê sazûmana zmanê Tirkî ji dêlva vana ve bi Erebî û Farisî "Örf-i idare", "Mudde-i Umûmi", "Vilayet" bikar diani.

Ji sedemên rastiya li ber roje, ew sawcî û hakimên dibên: "**zmanê Kurdî, lihev-hatî ye**" bifikirin. Bila bifikirin çewa zmanê lihev-hatî hêrsbûnê ji neksa wan derbikeve. Berî generalên faşîst bên sazûmanê, Ecevit'ê ku hêvî dihate nişadanê, dema serkar bû ma çi nedihate kirin? Dema li meydana Tandoxan xwe li kursî dihejand û ma ne ew bû polisa gazi serkariyê dikir? Disa ne ew Ecevit bû jina xwe Rûhşan dibezand ser şoreşgeran, bi dengê xwe yê mina beqan alikariya polis û eskeran dixwesta?

Sekreterê Ecevit, Mustafa Ustundax, ji ber li Mêrdîn'ê işkencê û eziyetan li gelê me dikir alî PKK ve sûbayek hate cezakirinê, dema civata rojnamevanan de ma ne ew bû digo: "**li Tirkiyê pirsgirêka etnika tuneye. Em ray li tiştê wiha naynin!?**"

Ha! Rake yek li êdî bixe!!

Serekê şaxa çandî a Komunist Partiya Fransa rojnamevanê navdar JAN VÎDOL van li xwe eşkere dike: "**li Tirkiyê dema axavtina bi çepan re pirs ku tê ser gelê Kurda, çand û sin'eta Kurdan û diroka Kurda, ew ên zaf ji wan bawerim, ji hemûyan wa, ji sedî notê wan, mina ku min dît hemû dibine mina paşverûyên tarî û hişk. Mina hemû li ser tunebûna Kurdan yekdev bûbin!**" Hêviya me ya ku ew çepên têne zman ku Jan Vidol bi wan re peyiviye kesên CHP bin!!? Ji ber van yeka me Ustundax, Ecevit û Ruhşan nişan da.

Xortên Kurd! Ji bir nekin xwînrij Yaşar Degerli, Xwînxwarê Kurda Fehmî Altinbilek, Esat Oktay Yildiran, qisatê qirkirina 5000 xort û zarûyên Kurda Sadi Irmak, Suleyman, Ecevit, Ruhşan û ferqa M. Alî Aybar qet ji hev tune ye. Ku dema tê gotin "gelê Kurd" heye, çavê wan û yên mina vana ji hêlinên xwe dertên. Ji hêstrên çavê van timsehan nebawerbin û li wan nexapin.

Bê guman emperyalist û karbidestên burjuvayê zevftkar bi hêzin. Lê ne bê binketinin. Bê hêvîtî ne a zmane. Ji her alî ve raste ku wêje, zman, sin'et û çanda Kurd dibin nirê qolonyalistî de ye. Hukumeta Norwêç'ê ji bo gelê LAPON (ku 25 hezar kes ninin), mafê radyo, televizyon û rojnamê nişan daye. Li Kurdistan'a Bakûr 18 milyon Kurd dûrî hemû mafî ne.

Lê, ev rastî heye, wê zmanê Kurdî, zincîra pêçayî bişkîne û ji hev perçe-perçe bike. Mina şoreşgerek Kurd dibêje: "**ji bo em li hemû taybetên ESPERANTO kêrnehat û li ser kaxiz hate jibirkirinê! Zmanê Tirkî û zmanê Kurdî, ji alî gel ve tên xebitandinê û herdû zman, zmanên netewa ne. Hemberiya vê rastiyê tu feyde nade. Li vê hember sawcî û hakima feyda gelê Kurd, erd û çand, wêje û zman û erdê jindariyê derbikevin û bi afirin, li dijî hemberên raweste, mirov û hêza tebiatê bi hemû hêza xwe li hember derbikevin**"[(12)]

---

## DAXWAZA ÇELO...

Çelo; karkerek ji karkerên Kurdistan li dervayî welat bi êş, û xwezî, bi dilek birîn li gor qeysa xwe bi pergalên welathizî li pêkhatinên Kurdistan'ê gudarbû, bihist, dît û di vî alî de xebatan pêkanî, ta bihna xwe ya dawiyê di rewşa jiyana dervahî welat de pergal û piva jiyana welathizî, bihûr-bijarî sitirand. Ew bi hiş û pêkaninên xwe her roj, her gav, her bihn li nav gelê Kurdistan, li welat li cenga Kurdistan bû. Bi vê hilmsitendinê 9 ê Gulan'ê de çû rihmetê.

Ji ber bi vê dilxwazî û pergala pak, Çelo sala 1.7.1980yan de xwestin û dilêşên xwe deng dike û ji «*Dotmama Xwe ra*» tîne zman. Em ê helbesta wî daxûyanên xwendevan û karkerên Kurdistan'ê bikin:

*Dotmam, min bihîst disa dilê te bi jan e*
*Ew jan ji janeka giran e*
*Ew jan xweş nabe bi bijîsk û derman e*
*Xweşkirina wê janê azadiya Kurd û Kurdistan e.*

*Dotmam ti kaye guh bi de ser Îraq û Îran'ê*
*Herroj tên kuştin bi sedan lawên Kurdistan'ê*
*Li jêr tank û top, li jor xwînjîna firokan e*
**Lê**, *minet nakin ji dijmin daxwaz azadiya Kurdistan e*

*Dotmam, min bihîst, disa girtin ser mala te*
*Dijmin girtine herdû berxên te*
*Herdû berxên te xwedikir bi şîrê berên xwe*
*Destê wan girêdan li ber çavên te.*

*Dotmam ez îro gellek dilgeş im*
*Li dû doza Kurdistan e ez ê her bimeşim*
*Ta ku dijmin ji hev bi pelêşim*
*Bi pelişandina dijmin tevgelê xwe dilxweşbim.*

*Dotmam Kurdistan li ber dilê min gellek şêrîn e*
*Serxwebûna wê gellek dijwar e hêsan nîne*
*Bê girtin, bê kuştin ji azadiyê ra qet çare nîne*
*Divê bi girtin û kuştin dijmin çavên me netirsîne.*

*Dotmam, dixwazim li te bikim du şiretan*
*Hêvî dikim qenc tê guh bidî wan*
*Ger herçar kurên min û te bên kuştin ji*
*Tu ji bi min ra bêje* **Biji Kurdistan!**

Çelo, 1980

# BİLÛRA MİN

*Bilûra min a şirîn*
*Tu di sarîya sibehê*
*Û hingûra êvarê de*
*Hevalê bêhevalan,*
*Destbrayê şivan û dilketîyanî.*

*Dengê te*
*Hêstirên dilên xemgîran*
*Silava ji hev-veqetîyan,*
*Girîn û zarîna dilketiyan*
*Tîne bîra min.*

*Bilûra min tu yî,*
*Xemrevîna terkeserên dinyayên!*

*Dengê bilûra min*
*Çiya û zozanên bilind*
*Kanîyên bi gul û rihan dorgirtî,*
*Guhê şikeft û serê zinaran*
*Guhdarên te ne..*
*Û sûra bayê xerbî*
*Te di nav pelên darê de digerî ne.*

*Bilûra min, were em ê*
*Bi wî çiyayê bilind re*
*Bi hewa kevin,*
*Û bibin cîranê bayên xurt*
*Û hevalê kimtên wan*
*Yên bi mij û dûman,*
*Û tê de dengê xwe berdin,*
*Û zarîna dengê me*
*Bikeve nav kortal û gelîyan*
*Û bêcanîya erdên jêrîn*
*Bihejîne;*
*Û pêlên ava heftreng*
*Ên xemzebaz*
*Nalîna me bigehîne*
*Deşta Sirûç û Dîyarbekrê;*
*Û berîya mêrxasên Berazan;*
*Û kalîna berxan*
*Tev şehîna hespan*
*Li me vegerînin.*

*Bilûra min, binêre û bibihîze!*
*Roj çû ava,*
*Stêra êvarê bû geş,*
*Kolosên çîyan ên gewr*
*Û hewranîyên wan ên sor û zêrîn*
*Bûne çûn;*
*Û pêlên ava şevê ên reş*
*Ketine deşt û newalan*
*Heta rûyê gir û kepezan.*
*Di qereca de*
*Kevir pîyê şevgera dixapînin,*
*Û bê dengîya şevê de*
*Pêjna lingên mêrxasan tên.*

*Bilûra min,*
*Dengê xwe berde!*
*Dinya: mîna zarokekî berşîr,*
*Ket dergûşa xwe;*
*Dengê xwe berde.. bilûra min...*
*Û jê re bilorîne,*
*Xema wê birevîne!*
*Bilûra min tuyî,*
*Xemrevîna terkeserên dinyayê;*
*Û li rohelatî*
*Dema ku dinya hişyar dibe*
*Ji xew radibe*
*Ji me re*
*Strana azahî û serbestîya*
*Kurdistan'ê*
*Binehwirîne*
*Û dengê wê stranê, bila,*
*Mîna tîrêjên rojê ên pak û zêrîn*
*Bikeve nav dil û guhên me.*
*Bilûra min,*
*Tuyî xemrevîna dilketîyên welêt.*

---

**Seydayê Gerok, 1941**



**Hogir Mehmet, Kurdistaneka Serbixwe-Yekhev û Demokratîk,**
**ku di vê rêyê de canê xwe da, wê sazbibie;**
**û navê te wê bi vê serpêhatinê re bijî**